

Hozan Brader:
**"Bazara mûzîka kurdî tuneye"**

▶ 7



کچی ئیستا حەزیان
لە کابانی نییە

6 ◀



Helbestvana jinên taristanê:
**Bilge Sümer**

▶ 12


# Rûdaw

**Cejna we ya Remezanê pîroz be!**

Hejmar: 12
22 Îlon 2009
www.rudaw.net



ÇAPA EWRÛPA

Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Denmark 15,00 DKK

Nr. 12 |22. September 2009 | Dienstag


Wezîrê Dadê Farûq Cemîl:

## "Gendeliyê hemû Kurdistanê dagirtiye"



(Wêne: Rûdaw)

**Eli Heme Salih**

**Rûdaw (Hewlêr)** - Wezîrê Dadê Farûq Cemîl rêveberiya lijneyeke ji bo şopandina raporên Diwana Çavdêriya Darayî di derbarê dezgehên berê yên idareya Silêmaniyê dike. Wî herwiha desteyeke Daxwazkariya Giştî ji bo şopandina dezgehên hikûmetê çêkiriye û dibêje ku gilînameyên wê desteyê zêde li ser berpirsên ser bi PDK'ê li Dadgeha Hewlêrê hatine tomarkirin. Farûq Cemîl pirsên Rûdawê di derbarê tevgera li dijî gendeliyê li Kurdistanê bersivandin û bahsa xebatên lijneya xwe kir. ▶ 7

## "Kurd gihîştine qonaxa konferansa netewî"



(Wêne: Rûdaw)

**Köln (Rûdaw)** - Parlamenterê DTP'ê yê Bedlîsê Nezir Karabaş di derbarê pêşveçûnên dawîn ên siyasî de ji Rûdawê re axifî. Karabaş êrişên li ser partiya wan wek berdewama siyaseta înkarê dinirxîne û dibêje ku heta destûr neyê guhertin wê erişên li ser Kurdan bidomin. Karabaş di wê baweriyê de ye ku têkoşîna gelê Kurd û hebûna Herêma Kurdistanê ji siyaseta çar dewletên ku xaka Kurdan parve kirine, guhertiye. Serdana heyeta DTP'ê ya li Herêma Kurdistanê ji Karabaş wek "encamên pêşketina siyaset û yekitiya gelê Kurd" dinirxîne. Karabaş dibêje "Kurd êdî di qonaxa konferanseki netewî de ne. Dema brakujiyê çû edî, dem dema yekitiya Kurdan e." Mebûsê Bedlîsê yê DTP'ê di derbarê mijarên dawîn de pirsên Rûdawê bersivandin. ▶ 4

Saziyên Kurd hilbijartinên Almanya nirxandin:

## Kurd dîsa dereng man

**Köln (Rûdaw)** - Saziyên Kurd yên Almanya di derbarê hilbijartinên Almanya ku di 27'ê îlonê de tên lidarxistin, helwestên xwe ji Rûdawê re diyar dikin. Li gor berdevkên saziyan, Kurd ji ber ku amadekariyên hilbijartina nekirin, vê carê jî dereng mane.

**Mehmet Şahin (Berdevkê Dialog Kreis):** Wek her hilbijartinê Kurd dîsa dereng man. Tu amadekariyên Kurdan ên taybet ji bo hilbijartinan tuneye. Li Almanyayê ji 250 hezarî zêdetir dengên Kurdan hene, bi bernameyeki siyasî mirov dikare li ser van dengan bi her partiyên Alman re bazara diplomatîk bike. Lê em li ku binêrin dibinin ku lobiya Dewleta Tirk heye; li ser navê xwe û navê me ew têkiliyan girê didin. Em dikarin ji vê kêmxebata xwe ders bistînin û ji bo hilbijartina 4 sal şûnde amadekariyê bikin. Bi bernameyên xurt, amadekariyên bi pilan em dikarin li ser siyaseta partiyan bandorê çêbikin. ▶ 10

**Hewlêr / Köln (Rûdaw)** - Şanda DTP'ê ku bi armanca hevditinên ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd û pêşvebirina têkiliyên di navbera hêzên Kurd de di 15'ê îlonê de çûbû Herêma Kurdistanê, roja 18'ê îlonê vegeriya. Herçend hevditin û bernama şanda DTP'ê li ber çavê raya giştî qewimî jî, sedemên esasî yê gera DTP'yiyan heta niha eşkere nebuye. Endamên şanda DTP'ê ku pirsên Rûdawê bersivandin jî, bi xetên giştî bahsa hevditinan kirin û bi taybetî di derbarê amadekariya kongreya netewî û alikariya hikûmeta heremê ya di derbarê çareseriya Bakur de pirs bê bersiv hiştin.

Di şandê de Hevserokê DTP'ê Ahmet Türk, Hevseroka DTP'ê Emine Ayna, Parlamentera Stenbolê Sebahat Tuncel, Parlamentera Şirnexê Sevahir Bayındır, Serokê Şaredarê Bajarê Mezin ê Amedê Osman Baydemir û Berdevkê Demê yê Kongreya Civaka Demokratîk (CDK) Hatip Dicle hebûn. Şanda DTP'ê bi Serokkomarê Îraqê Celal Talabanî, Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, Serokê Parlamentoya Kurdistanê Kemal Kerkukî, Serokê Lista Kurdistanî ya Parlamentoya

Bakur li Başûr e!

## "Dema yekîtiya Kurdan e"



(Wêne: Rûdaw)

Îraqê Arif Teyfurî û parlamenterên Kurd yên Îraqî û gelek kesên din re hevditin çêkirin.

Heyata DTP'ê roja 15'ê îlonê gihiştin Kurdistanê. Şanda DTP'ê li Balafirgeha Silêmaniyê ji aliyê endamên Politburoya YNK'ê Mela Bextiyar û rayedarên YNK'ê ve hatin pêşwazikirin. Hevserokê DTP'ê Ahmet Türk li balafirgehê pirsên rojnamegeran bersivandin. Li ser hatina DTP'ê ya Kurdistanê Türk anî ziman ku heyeta wan bi armanca niqaşkirina çareseriya pirsgirêka Kurd û danûstandinên di derbarê pirsgirêkên Rojhilata Navîn û pêşketinên dawî hatiye Kurdistanê. Pişti daxuyaniyê şanda DTP'ê serdana Serokomarê Îraqê Celal Talabanî kir. Civîna Şanda DTP'ê li gel Serokomarê Îraqa Federal Celal Talabanî, Endamê Politburoya YNK'ê Mela Bextiyar, Nûnerê YNK'ê yê Tirkiyeyê Behroz Gelelî û gelek kesên din yên asta jor yên YNK'ê, saetek ajot. Şanda DTP'ê ew şev bû mêvanê Talabanî. ▶ 8

## Hilbijartinên Almanya:

**RÛDAW TAYBET**




**Reform ji bo Tirkiyê kilîta YE'yê ye**






**Dîvê Kurd berê xwe bidin SPD'ê**






**Dîvê Kurd bibin endamê CDU!**






**Em parazvanê Kurdan in!**



**Nûçeyên di derbarê hilbijartinên giştî yê Almanyayê di rûpela 8'an de...**

Şaredarê Berlînê:

## Rûdaw li diyasporaya Kurd pîroz be!

**Îsmet Siverekli**

**Berlin (Rûdaw)** - Komela Dostaniya Alman û Kurd li Berlin-Brandenburgê (RONAHÎ), Rojên Çanda Navnetewî ya duyem, di 18-20'ê îlonê de, li Berlînê li dar xist. Şaredarê navçeya Berlin Mitte Dr. Christian Hanke, şewekarên Kurd Fehmi Balayî û Gohdar Basas, Dezgeha Polês ya Berlînê, namzetê Mecllisa Federal û Serokê Partiya Die Linke yê Berlînê Kalus Lederer, namzetê Partiya CDU û gelek sazî û kesayetiyên Kurd, Alman û biyanî beşdarî çalakiyan bûn.

Şaredarê Berlin Mitte Dr. Christian Hanke di axaftina ve-



(Wêne: Rûdaw)

Peyamnerê me Îsmet Siverekli li gel şaredarê Berlin Mitte Dr. Christian Hanke

kirinê de got ku çalakiyên wiha rengîn, çandên cuda digihînin hev û kêfxweşiya xwe ya tevlîbûna çalakiyê anî ziman. Şaredarê Dr. Christian Hanke daxuyaniyek taybet da Rûdawê û ji bo rojnameya me serkeftin xwest. Hanke, bi rêya Rûdawê xwest peyameke bide Kurdan: "Divê Kurdên diyasporayê rojnameyên bi zimanê xwe bixwînin. Li ser navê Kurdan ez gelek kêfxweş im ku Rûdaw dest bi weşanê kiriye. Ji bo geleki ku nasnameya wî nehatiye naskirin û li benda naskirinê ye, tiştek ji xwendin û nivisandina zimanê wî yê zikmakî xwezayîtir nîne. Kurd dive di civatê de wek 'Kurd' bên naskirin û mafên xwe yên çandî bijîn. Ev yek rê li ber integrasyonê vedike û vê pêvajoyê zutir pêşve dibe. Kurdên li diyasporayê dijîn, divê bi dê û bavên xwe re zimanê xwe bipeyivin û li hev bikin. Şaredariya me hertim piştgiriya vê yekê dike."

Hanke pişti ku li Rûdawê temaşê kir, got ku ew li ser navê Kurdan pir kêfxweş bû ku rojnameyeki wiha li Almanya derketiye û ew dixwazin wek şaredarî alikariya Rûdawê bikin.




# Modeleke baş ji bo ciwanên Kurd



**Evdila Koçer**

**Stockholm (Rûdaw)** - Tima futbolê DalKurd hêj niha ve garantî kir ku wê bikeve liga yekem ya Swêdê. Futbolhezên Kurd yên li seranserê dinyayê vê serkeftina mezin ya DalKurdê bi kêf û şahiyan pîroz dikin. DalKurd hêj niha ve di dilê Kurdan de bûye efsaneyek.

Tima DalKurd ya ku berî pênc salan li Swêdê hate avakirin, her sal derket ligeke berjor. Bi têkoşîn û serkeftina xwe ya futbolê ve ji niha ve kete nava dîroka futbolê ya Swêdê jî.

Serokê Klûba DalKurd Ramazan Kızıl (51) ku ji Girêmira Mêrdînê ye, di derbarê serkeftin û serpêhatiya tima DalKurdê de agahiyên taybet dan Rûdawê û ji me re behsa çîroka wê kir.

Ramazan Kızıl da zanîn ku tima DalKurdê di sala cotmeha 2004'an de ji hêla wî û Mehmet Abiç, İdris Ayık, Elvan Çiçan, Kasım Kanyon, Tahir Ozan û Halil Karakaş ve hatiye damezirandin.

Kızıl dibêje ku navê 'DalKurd'ê ji Dalerneya bajarê wan yê li Swêdê û peyva Kurd pêk tê, "Vêga di bin banê DalKurdê de, 11 tîm hene, 230 jê law û 20 jî keçin" Em jê dipirsin ka fikra damezirandina tima DalKurdê ji ku derketiye, Kızıl diyar dike ku wan xwestiye li surgunê xwedî li ciwanên Kurd derkevin û ew jî di hêla xwe de kareki ji civaka xwe re bikin, "Em her yek bi darê zorê ji gund û bajarên xwe hatin koçberkirin û li seranserî Ewrûpayê belav bûn, bi taybetî jî li Swêdê. Yek ji me jî bi kêfa xwe, bi riza xwe nehatiye Ewrûpayê. Vêca dewleta Tirk dixwest ku em li Ewrûpayê jî bi yek bi yek winda bibin û bihelin. Armanca me ew bû ku em bibin bersiva vê koçberiyê, me xwest em bi vî rengî tola xwe, heyfa xwe hilînin..."

Serokê DalKurdê di dirêjiya axaftina xwe de agir li sîstema Tirkiyê dibarîne: "Jixwe ne mumkun bû ku me li Mêrdînê an jî li bajarekî din yê Kurdistanê bi van rengên xwe yên Kurd û Kurdistanî ve xwe bi futbolê an jî bi tiştekê din îfade bikira..."

Ramazan Kızıl lê zêde dike ku wan di nav bêimkaniyên mezin de gihiştina serkeftina îro: "Felsefeya me ew bû ku 'Kî bike ez ê pê re bikim, kî bide ez ê pê re bidim,' û bi vî rengî jî me mil da hev heta ku em gihiştin îro..."

Kızıl balê dikişîne ser ku di nav tima DalKurdê de jî her çar perçeyên Kurdistanê listikvan hene: "Ew tiştê ku sazî û partiyên Kurdan ava nekirine şikir me ava kiriye, em jî bo civaka xwe jî modeleke baş in. Li ser sehayê em neteweyî ne, em bi hev re bi ser dikevin, lê li derve jî helbet her kes bi fikrên xwe yî hizbî ve dikare tevbigere. Tiştê giring ew e ku em alaya Kurdistanê her bilind bikin. Herwiha me di bin banê DalKurdê de tirkî, erebî û farisî jî qedexe kiriye. Em bi hev re bi Kurdî dipeyivin..."

Dû re diyar dike ku ewan heta niha jî tu partî û rêxistinî yarmetiyek negirtine: "Dev ji yarmetiyê berde, heta niha karteke pîrozbahiyê kesî jî me re neşandiye. Lê dîsa jî deriyê me ji hemû rêxistinên Kurdistanê re vekirine. Em dizanin ku ew jî xizmeta civakê dikin. Bila kerem bikin werin li lobiya ku me li Swêdê çêkiriye binêrin, bila bên li ser vê lobiya futbolê, siyasetê bikin jî bo welat..."

Li ser medyaya Kurdî jî bi acizî diaxife: "Medya Kurd diçe heta li Afrikayê jî li ser meymûnan belgefîlman çêdike, lê van serkeftinên me nabînin. Medya swêdî û ya Tirkan heta êvarê li pey me ne, lê ya rastî em dixwazin ku pêşî di medya xwe ya Kurd derkevin da ku haya ciwanên Kurd jî van serkeftinên me hebe"

Kızıl bi bîr tîne ku Ajansa Anatoliyê (A.A.) li ser serkeftina DalKurdê bi wan re hevpeyvîneke dûvdirêj çêkirine, lê ji ber hin gotinan neweşandine, "Li ser alaya Kurdistanê pirsek ji min kirin. Min jî wan re got ku ji ber vê alayê em li welat dihatin kuştin, koçberkirin; ji bo xatirê vê alayê bi hezaran keç û xortên Kurdan ketin bin işkenceyan û goristanan..."

Dilê Ramazan Kızıl tije ye, lê ew niha bi vê serkeftinê kêfxweş e: "Serkeftin bi dil û bi bawerî çêdibe. Bi gotin û kirinên vala tiştek naçe ser. Gelek keç û xortên Kurd ji bo vê serkeftina me giriyan. Bi hezaran bi alaya Kurdistanê ve piştgirêya me kirin. Niha gelek ciwan dixwazin bi me re bilizin."

Li ser pirsa me Kızıl dibêje ku ji wan re her tişt problem e lê pere ne problem e, "Lê em dizanin ku bi pereyan jî serkeftin çênabe. Ji bo ku em navê Kurdan bi rêya futbola xwe li hemû dinyayê bidine naskirin, emê her tiştî bikin. Ji bilî serkeftinê em tiştî nas nakin. Kurd dema ku bawer bikin wê gelek serkeftinên din bi destê wan ve were. Lê mixabin Kurd heta niha jî hêla serdestên xwe ve her hatine xapandin û di nava civakê de jî piçeki şkestine. Lê dema ku li rastî tiştên wekî serkeftinên me bên, xwîna wan ya neteweyî dikele, rihê wan dicoşe..."



Em jê dipirsin ka xeyala wan ya herî mezin di futbolê de çi ye: "Xeyala me ya herî mezin ew e ku em bikevin pêşbirkên Futbolê yên Ewrûpayê û di wir de jî derkevin hemberî tîma Fenerbahçe an jî Galatasaray, da ku em alaya Kurdistanê nîşanî hemû tirkan bidin, da ku bizanibin wê Kurd her rojekî tola xwe hilînin. Em wan şehîdan, wan gundên şewitî jî bîr nakin... Em dixwazin tola koçberkirinê bi rêya futbolê hildin..."

Serokê DalKurdê li ser pirsa me diyar dike ku wan heta niha bêhejmar xelat wergirtine, "Xelatên me nayêne hejmartin. Lê xelata me ya herî mezin ew e ku me ciheki xwe yî hêja di nav hemû Kurdan de çêkiriye..."

Paşê Kızıl lê zêde dike ku hin Kurd hê jî bi çaveke biçûk li wan dinêrin: "Mixabin aqilê hin Kurdan dibe belayê serê wan jî. Hê jî hin Kurd hene, dibêjin qey em timeke biçûk ya mehelê ne û li bendê ne ku tîma me piştî çend mehên din jî hev bipelişe. Mixabin dîmenên wisa jî di nav civaka me de hene. Bifikirin çavê hemû civaka Swêdî, çavê hemû medyaya swêdî li ser me ye, li ser me belgefîlman dikişînin, hêj niha ve tarixa me dinivisin, lê ev Kurd jî me hêj piçûk dibînin..."

Ramazan Kızıl di dawiyê de dibêje ku ew dixwazin ji hemû civaka Kurd re bibin modelek: "Binêrin şêxekî Ereban jî bo reklama welatê xwe diçe Mancherster City dikire, her kes bi rêya futbolê reklama welatê xwe dike, îmaja welatê xwe rast dike, lê tu kes tune ku vê lobiya me çêkiriye bixe xizmeta civaka Kurd..."



# Rojek berî zewacê

**Dresden (Rûdaw)** - Lisa keçeke Alman e, 28 salî ye. Wê bi şahî û kêfxweşiyeke mezin ve bizewice û bigihîje miraza xwe. Lewma rojek berî zewacê bi hevalên xwe yên keç re li kolan û sîkakan, li bar û diskotekan, li aşxane û meyxaneyên bajarê Dresdenê dixwaze bigere, bireqise, vexwe, bixwe, bikene, biqîre û belkî jî serxweş bibe.

Ev adeta ku ji Îngilterеyê hatiye, niha hêdî hêdî belavî hemû Ewrûpayê dibe. Berî zewacê rojek an jî çend rojan bûk û zava bi hevalên xwe yên nêzîk re dixwazin roja xwe ya dawî ya ezebtiyê bi rengekî sembolîk bijîn û pîroz bikin. Ji bo vê yekê hevalên wan jî wan re sûrprîzên balkêş amade dikin.

Bi vî awayî em li kolaneke Dresdena Almanyayê li rastî Lisayê jî tên. Bi kincên xwe yê bûkaniyê jî silava me gelekî kêfxweş dibe. Em dixwazin ku ew vê şeva xwe ya dawî ya ezebtiyê, hest û kêfxweşiya xwe bi Rûdawê re jî parve bike.

Lisa bi vê yekê helbet gelekî kêfxweş dibe û wisa dibêje: "Ev ê jî min re bibe bîranîneke geleke mezin ku ez di vê roja xwe ya dawî de li rastî rojnamegerekî Kurd têm...".

Bi vê roja xwe ya dawî gelekî kêfxweş e, bi qewlê Kurdan dike ku bifire, "Ez îro xwe wek pirpirikê his dikim, ez ê îro li hemû kolanên Dresdenê bifirim, venişim, bigerim, vexwim heta ku ez dîn bibim."

Lisa filologî xwendiye. Hevalê xwe jî li wir nas kiriye. Bi qewlê wê, evîna wan li zaningehê meyiyaye: "Hevalê min jî wek min dîn e, jixwe eşq jî karê dînan e. Gava mirov li rastî evîna rastî tê, hingê jî nû ve jî diya xwe tê dinyayê. Gava ku ez li rastî Thomas hatim, ev yek hate serê min. Ez hê jî bawer nakim ku ez ê sibe pê re bizewicim... Ez hêvî dikim ku her kes van hestên min bijî. Ji vê xweştir tiştek tune."

Em jê dixwazin fêr bibin ka Thomas çawa ew qane kiriye ku pê re bizewice. Lisa bi ken dibêje, "Thomas ez birim giraveke li Yunanistanê. Ji bilî me tu kes tunebû. Ji min re got, 'Lisa tu dixwazî bi min re bizewicî?. Min nedizanî ku çi bêjim. Ez pir giriyam, ji vê re ne hazir bûm ku jê re bêjim 'ERÊ,' lê dawiyê de min bi hêsirên xwe ve jê re got erê..."

Hevalên wê jê re çend tiştên biçûk hazir kirine, da ku Lisa kolan bi kolan bigere û wan bifroşe. Ji kondomê bigire heta şekirên xemirok...

Lisa mecbûr e ku wan bifroşe da ku bi gelek kesan re bikeve têkiliyê, henekan bike, wêne bikişîne.. Bi kurtasî da ku li kolanên Dresdenê jî xwe re bîranînên xweşik top bike roja berî zewacê.

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net · **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de
**Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81
**Web:** www.rudaw.net · **E-mail:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-mail:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)



# Bejna Sarkozy dara sipîndarê ye!

**Rûdaw (Reuters)** – Rayedarên Serokkomariya Fransayê hewldidin bejna Sarkozy dirêj nîşan bide. Ji bo vê yekê çend karmendên bejinkurt wezîfedarkir ku di civînên çapemeniyê de li pişt Nicola Sarkozy bisekinin da ku bejna wî dirêj xuyabike. Ev yek jî dibe sedemê henek û rexneya partiyên opozisyonê. Koşka Elise jî vê nûçeyê wek derew wesif dike.

Endameki Sendîqaya Karkerên Fransa di hevpeyvînekê de ragehandibû pêş serdana Sarkozy bo kargehê, ofîsa serokê Fransayê daxwaz ji rêveberiya kargeha Foresya kiribû jimareke karkerên bejinkurt destnîşan bike ku bi mebesta veşartina bejna Sarkozy ya kurt, li pişt wî biwestin.

Piştî ku Sarkozy ji kargeha navbirî vegeriya, gotarek pêşkêş kir ku jimareke karkeran li pişt wî westiyabûn û herçiqasî bejna Sarkozy kurt e lê bejna wan karkeran jî ya wî kurttir bû. Piştî belavbûna vê nûçeyê ofîsa serokkomar bi tundî red kir ku daxwazeke bi wî awayî bo rêveberiya kargeha Foresya nehatiye kirin.

Li gor agahiyên medya Fransî Sarkozy gelek caran jî bo veşartina bejna xwe ya kurt daxwaz ji hevsera xwe Carla dike ku pêlavên bilind nexe lingê xwe.

# Li Hewlêrê muzeya niştîmanî

**Meriwan Feyzula Salihî**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Hikûmeta Herêma Kurdistanê dixwaze muzeyeki niştîmanî ya Kurdistanî ya nûjen ava bike. Rêvebirê Giştî yê Wezareta Rewşenbîrî ya Herêma Kurdistanê Kenan Muftî diyar kir ku muze wê li gor standardên cîhanê be. Muftî got ku wê di destpêka sala 2010'an dest bi projeyê bikin. Mesrefa muzeyê wê nêzîkî 25 milyon dolar bigire, lê heta niha bîryar nehatiye dayîn.

Muzeya şaristanî ku li navenda bajarê Hewlêrê ye, tê texmînkirin ku di sala 1989'an de hatibe çêkirin, lê heta niha tu guhertinek têde nehatiye kirin. Hemû alav û amûrên bêhempa û holekê de hatine nimayîşkirin ku çi kontroleki hewa tê de tune. Heft parêzerên wê hene, lê tenê du kes jî wan piştî seet 12ê şevê li wir dîminin û diparêzin. Rêvebira niha yê Muzeyê Nihayet Ebdula di wê derbarê de wiha axifî: "Ew muzexane di reweşek xerab de ye." Nihayet Ebdula gelek hêviyek zêde bi muzeya niştîmanî ya nû heye. Li gor axaftina Nihayetê, muzexaneya nû wê wek hemû muzeyên niştîmanî yên cîhanê bibe: "Muzeya me wê bi taybet dîroka Kurdistanê û şaristaniyeta Mezopotamyayê ye bipareze."



Ev proje ji aliyê Wezareta Karê Derve ya Amerîka û Rêxistina UNESCO ve tê piştgirîkirin. Muzeya Şaristaniya Hewlêrê, ji aliyê beşa Entîkexaneya Hewlêrê tê serperiştîkirin ku beşek ji Wezareta Geşt û Guzarê ye û nêzîkî 3 hezar û 500 alavên kevin têde ne. Di nav van de serdemê mirovên Neandertal, çaxê kevir û şaristaniya Mezopotamya hola pêşwazîkirinê taybet bi alav û kelûpelên folklora Kurdî ye ku dîroka wan vedigere 200 salan berî niha.

Şanda hiqûqnasên Kurd li Almanya:

# Gelek yasa wekhev in, lê pêkanîn cuda ne

Mistefa Çiwartayî

**Rûdaw (Köln)** – Di hefteya pêşîn ya meha îlonê de şanda hiqûqnasên Kurdistanê ku ji çend dadwer, dozger, lêkolerên dadê û parêzer pêkhatibû, hatin Almanyayê. Serdana şandê ji alî Navenda Lêkolînên Kurdî li Bonnê (NAVEND) û Akademiya Dadê ya Eyaleta NRW, hatibû organêzekirin û bernama fermî hefteyek dom kiribû. Ev cara duyem e ku bi armanca lihevguhertina zaniyariyan, şandeke hiqûqnasên Kurdistanê serdana Almanyayê dikin.


(Wêne: Rûdaw)

Serokê şandê û Yekitiya Hiqûqnasên Kurdistanê Dadwer Tofiq Kerim Sadiq ji Rûdawê re ragihand ku armanca sereke ya serdana wan naskirina sistema dadweriya Almanya ye. Hewiha ji bo guhertina zanyariyan bi cûrekê ku ji bo sistema dadweriyê li Kurdistanê sûdê jê bibinin. Dadwer Tofiq wiha axifî: "Tişta ku bala min dikşîne girêdana hemû gelê Alman bi yasa ye. Xweziya ku li cem me ji wisa bûya. Ez hefteyekî li Almayayê geriyam, dengê horina otomobîlekî nehat guhê min."

**Tişta ku me dit, emê bikin pirtûk**

Di bersiva pirseke Rûdawê de, 'ka ezmûn û pisporiya ku mafperwer wê bibînin, wê çawa bighînin Kurdistanê û sûdê jê bigirin?' dadwer Tofiq wiha dibêje: "Emê hewlbidin hûrbînî û encamên vê serdanê bikin pirtûk ku aliyên pêwendîdar sûdê jê bigrin, wek me cara berê ji ev kar kiriye."

Dozgerê Giştî û Endamê Heyeta Bilind a Yekitiya Hiqûqnasên Kurdistanê Mihemed Elî Rêkanî ji wiha dibêje: "Armanca serdana me bêtir aliyê yasayî û dadwerî bû. Ji ber ku Almanya welatekî federal e û desthelata dadwerî li hereman û li navendê ji heye, lewma ji me re geleki giring e em zanyarî û tecrûbeya wan bigirin, ji bo ku em bikaribin bêtir desthelatan ji Herema Kurdistanê re bidest bixin. Li Almanyayê ji serweriya yasayê ji serî ve daketiye xwarê. Kes xwe ji derveyî yasayê nabîne. Ev bûye perwerde û wek kultur lêhatiye. Her ji baxçeyên zarokan, xwandingeh û saziyên medyayê, bahsa wê tê kirin û tê meşandin. Mixabin li Kurdistanê wisa tê fahmkirin ku yasa tenê li dadgehan cibicî dibe, ev şaşî ye."

**Serdana zindaneke Almanyayê**

Endamê Şandeyê Dadwer Osman Yasin ji di derbarê serdana wan de wiha got: "Wek ku di bernameyê de hatibû diyar kirin, armanca ji vê serdanê lihevguhertina zanyariyên sistema dadwerî û karûbarên girêdayî wê sistemê bû. Wan bahsa sistema dadweriya xwe ji me re kirin û me ji bahsa sistema dadweriya Kurdistan û Îraqê ji wan re kir."

Dadwer Osman Yasin bahsa cudahiya di navbera sistema dadwerî ya Kurdistan û Almanyayê kir û wiha got: "Tişta ku me têbînî kir ewe ku sistema wan ya dadwerî hêjî girêdayî desthilata cibicîkirinê ye û sistema me ya Herema Kurdistanê ji sala 2007'an ve ji Wezareta Dad cudabûye. Lê heya niha li vir ji aliyê îdarî ve, ew sistem girêdayî Wezareta Dadê ye." Osman Yasînî nexwest bêtir di derbarê serdana şandeyê ya ji bo zindana Gelsenkirchen biaxife û got "Weke her ciyekî din yê girêdayî dadweriyê, me serdana wê derê ji kir." Lê Parêzer Kemal Cemal ku wî ji serdana wê zindanê kiribû, zindana Almanya digel Kurdistanê hevberkir: "Zindanên vir geleki baş in, azadî heye, kes xedrê li kesê nake. Her yekî jûra xwe ya taybetî heye. Text û televizyon hene. Programên wan ên werzişî hene, hemû pêwistî ji wan re tên misogerkirin."

**Gelek yasa wek hev in**

Lêkolera Dadî, Şilan Pîrdawud Dizeyî ku yek ji beşdarên şandeyê bû, ji Rûdawê re ragihand ku ev cara yekeme ew tê Almanya û ew li gelek bajaran geriyaye û gelek sazî dîtine: "Tişta me dît ew e ku gelek yasayên me wekhev in. Dibe ku di aliyê cibicîkirinê de cudahiyên me hebin."

Endamê Yekîtiya Hiqûqnasên Kurdistanê Parêzer Mihemed Sadulah Mihemed dibêje ku serdana wan geleki serkeftî bû: "Me wek yasanasên Kurdistanê, gelek hûrbiniyên yasayî yên girêdayî karûbarên dadwerî naskirin. Hin ji yasayên me yên serdema berê mane û pêwist e werin destkarikirin û rastvekirin. Wek yasaya trafîkê ku yasayeke seqet e û divê guhertin tê de bên kirin."

# "Kela Hewlêrê di rojeva UNESCO'yê de ye"





**Rûdaw (Hewlêr)** - Parêzgarê Hewlêrê, Newzad Hadî, gelek nigeran e ku hin kes bê xwendina masterpilana bajarê Hewlêrê rexneyan li karê wan dikin. Newzad Hadî dibêje amade ye ku guh bide têdîtin û nerînên hemû kesên şareza û dîtinên wan werbigre. Parêzgarê Hewlêrê gelek rexne û dîtinên xwe ji li ser kar û barên Desteya Nûjenkirina Kela Hewlêrê dike. Hadî pirsên di derbarê avadaniya Hewlerê û nûjenkirina kelê de bersivand.

*Hûn bi wê yekê tên rexnekirin ku bi mebesta bazirganiyê cihwarên dîrokî yên Hewlêrê têk didin?*

Kesên ev tawanbarî dikin, pêwist e li ser bingeheki zanistî û bi belge biaxivin. Berî her tiştî divê ew bizanin cihwarê dîrokî çiye û ew cihên ku li Hewlêrê wek cihwarên dîrokî tên hesibandin kuderin. Em xweser kar nakin, belku li gor yasaya taybet a warê cihuwanasiyê kar dikin. Em niha li ser masterpilanê kar dikin û di pileya sereke de ji wezareta şarevanî wi karî dike. Lê em wek parêzgeh, parêzvaniyê ji wan cihan dikin ku sifeteke qanûnî heye, masterpilan ji li gor yasayê hatiye danîn û li xwe re nebûye û gelek çavdêriya cihawaran hatiye kirin. Ew kes tên rexneyan digirin û behsa derdora kelê dikin. Pêwist bû di destpêkê de masterpilana wê bixwînin û bizanin gelo ew dizayna nû çiqas mal û avahiyên kevin ên kelê diparêze? Wê demê biryarê bidin û bêjin cihuwarên dîrokî hatine têkdan an na? Ya ku li Hewlêr û derdora kelê tê kirin, zêde hilgirtin e, nek çêkirina mal û avahiyan, bi rastî ew ne şareza ne û me sûçbar dikin, armanca wan ew e karê baş neyê kirin.

*Yanî kesên ku rexne li we digirin, ne şarezayên masterpilanê ne?*

Ez daxwazê dikim, masterplanê bixwînin, piştre biryarê bidin. Ji bo ku em bizanin bo parstina cihuwarên dîrokî me çi kiriye, ez wek Parêzgarê Hewlêrê çûm Amanê û min girêbestek bi rêxistina UNESCO'yê re mohr kir û me ji wan xwest ku bo serperiştikirina karê kelê werin Hewlêrê û bi me re kar bikin. Ji ber ku di bernama me de ye em projeya kela Hewlêrê pêşkêş bikin ji bo ku wek cihuwareki cihanî bê naskirin.

*Çima heta niha UNESCO'yê kela Hewlerê wek cihuwareki cihanî nasnekiriye?*

Ew kar bi şev û rojekê nayê kirin û em niha li ser wê yekê kar dikin, ji ber ku wan mercên taybet bi xwe hene. Me yekem girêbest li gel UNESCO'yê di 5'ê îlona 2007'an de imza kir. Me ji wan xwest werin Hewlêrê û bo nûnejkirin û amadekirina Kelê bi me re kar bikin, ji bo ku bê pêşkêşkirin û bibe cihuwareki dîrokî û bi fermî were naskirin. Bêguman ew gelek kar dixwaze û em li ser wê yekê berdewam in. Lê mixabin kesên rexneyan digirin nizanin ku me bo xizmetkirina kelê û amadekirina wê ji bo ku bibe cihuwareki cihanî bi hûrî çi kiriye. Baş e kesên ewqas rexneyan digirin û xwe bi dilsozê kelê dizanin, çima rexneyek ji deriyê qelê negirtin ku dema xwe li heştêyan mezintirin resen ên kelê hilgirtin û deriyekî Babilî yê ecêb li ser cesteyê qelê çêkirin. Wek min berê ji got, ji bo nûjenkirina Kela Hewlêrê me hinek têdîtin li ser wan pêşniyarên UNESCO'yê hene, ji ber ku em dixwazin kele nasnameya Hewlêrî ya xwe ji dest nede. Lewra di wê girêbesta dûyem de ku biryar e em ligel UNESCO'yê imza bikin, em dixwazin endazyareki avahiçêkirinê yê Hewlêr yan Kurdistanê bi lijneyê re be. Ji bo ku dema tê nûjenkirin, neyê têkdan û wek ew deriyê Babilî yê ser qelê jê neyê. Lewra me têdîtin li ser nerînên Desteya Nûjenkirina Kela Hewlêrê hene û me guman jê heye, ji ber ku em naxwazin cihuwarên me bên tevlihevkirin.

*We ji bo rakirina deriyê Babilî tu pêngavek avêtiye?*

Wezareta Rewşenbîrî di sala 2004'an de, konferansek li ser Kela Hewlêrê lidarxist ku têde çendîn kesên pispor û şareza ji Îtalya, Misir û cihên din beşdar bûn, yek ji biryar û rasipêriyên wê konfernasê hilgirtina wî derî bû, divê ew derî were hilgirtin. Ji ber ku ger em bixwazin kelê nûjen bikin û nîşanên resenbûna wê jê re vegerînin, divê deriyê wê ew be yê ku di pêncî û şêstiyan de hebû, ne yê di sala 1982'an de jêre hat çêkirin ku deriyekî Babilî ye. Li vir dixwazim vê yekê bibêjim ku bi tu awayekî em ne li dijî dîroka Aşûrî û Babiliyan in û em naxwazin dîroka wan red bikin. Çûnkî ew ji li vir jiyane, çi Aşûrî be yan Babilî û Akadî û Sumerî û wd. Lê çima nasnameya resen a Kela Hewlêrê bê tevlihevkirin û bibe Babilî? Divê wek xwe were nûjenkirin, ne bê têkdan û tevlihevkirin.

*UNESCO li ser guherina wî derî razî bûye?*

UNESCO tu pêşgiriyekî nake û razî ye, lê Desteya Nûjenkirina Kela Hewlêrê (bi serokatiya Şîrîn Îhsan Şêrzad) naxwaze wê yekê cibicî bike.

# Kurd û hilbijartinên Îraqê


Mustafa Şefîq Edilbî

Biryare di meha çile ya sala 2010'an de hilbijartinên Parlamena Îraqa Federal bên lidarxistin. Ji niha ve alî û eniyên siyasî li dijî hev ketine nav tevgerê û hevpeymanên nû derdikevin holê. Bêgûman ev hilbijartin ji bo Îraq û Kurdistanê geleki giring in. Weke ku tê zanîn piştî rûxana rejîma Saddam û hatina hêzên Amerîkayê ya nav Îraqê, ev cara dûyem e ku hilbijartinên parlamentoyê li Îraqê tên lidarxistin. Hilbijartinên sala 2005'an ku parlamena niha ya Îraqê berhemê wan hilbijartina ye, hem ji hindur û hem ji ji derveyî Îraqê gelek nehatibû pejirandin. Ji ber ku rewşa wê demê ya Îraqê pir tevlihev bû û teror di asta herî bilind de bû. Ji aliyê din ve herkesî wiha dihesiband ku hertişt di bin bandora Amerîkayê dimeşe. Ev herdû sedemên jor ji astengên mezin bûn li pêş îradeyeke azad ya xelkê Îraqê. Lê dema mirov li rewşa îro dinêre, gelekên wan sedemên hanê eger bi temamî ji holê ranebûne ji, lê şert û mercên ji bo hilbijartinên demokratîktir û azadtir êdî çêbûne. Lê weke tê zanîn her hêz û alî ewê bixwazin li gor berjewendî û daxwazên xwe bandorê li raya xelkê bikin. Ev yek ne li dijî demokrasiyê ye, lê di vir de hêjî xalên ku cihê tirsê ne hene. Yek ji van xalên herî giring ew e ku hêzên antîdemokratîk, nexasim hêzên şovenîst ên Ereb, xwedî bandoreke mezin in û ji hemûyan zêdetir dixwazin li ser desthilata Îraqê hikûm bikin. Her weha Îran jî ku xwedî bandorek olî ya mezine li ser Şiayên Îraqê, dixwaze şerê xwe û Amerîkayê di van hilbijartinan de bimeşîne. Heya astekî mezin Tirkiye û Sûriye ji li paş perdê bi eniya şovenîstên Erebî re xwedî heman nêrînin. Ji ber van sedeman mirov dibîne ku welatên derdorên Îraqê bi tevayî ewê bixebitin ku di hilbijartinan pêş yên Îraqê de eniya li dijî Kurdan xurt bikin. Xala herî giring ji ew e ku hemû aliyên li dijî Kurdan ewê bixebitin ku Kurdan li Baxdayê bêhêz bikin, Kurdan ji postên desthilata Îraqê dûr bixin û tenê postên ne giring ji Kurdan re bihêlin. Bi kurtayî hewlên dijberên Kurdan ewê ew bin ku qadê li pêşiya Kurdan teng bikin.

Li hemberî vê rewşê geleki giringe ku Kurd ji bi germî tevbigerin. Ji bo Kurdan sê aliyên giring hene ku divê kareki çalak were kirin. Xala yekem ew e ku divê Kurd bi yekîtiyeke xurt bikevin hilbijartinan û nakokiyên navxweyî yên hêzên Kurdistanê nebin zemîn ji bo destdirêjiyên ji derve. Xala dûyem ji ew e ku serkeftina Kurdan û biserketina hêzên demokratxwazên Îraqê bi hevre girêdayî ye. Bi şêweyekî giştî serkeftina pirsa Kurd girêdayî serkeftina Demokrasiyê li herêmê ye. Ji ber vê yekê ji divê Kurd û hêzên demokratxwazên Îraqê bi hêz tevbigerin û li hember eniya şoven xwedî helwestek eşkere bin. Divê Kurd û hêzên demokratxwaz hevkariya derve ya ji bo ji nû ve avakirina Îraqek demokratîk li ser bingehek rast bidin rûniştandin. Hîç gûman nîne ku hevkariya navnetewî di şert û mercên globalîzmê de tişteke ku nayê înkar kirin e, lê gelek alî dema li dijî desthilata Amerîka li Îraqê derdikevin, di heman demê aligirên desthilata Tirkiye û Îranê li Îraqê ne. Divê Kurd bi van pîvanên cotstandart neyên xapandin. Heta îstiqrara siyasî li ser bingehê wekhevî û demokrasiyê li Îraqê bi cih nebe, pêdivî Îraqê bi hevkariya ji derve heye, nexasim ya Kurdan bi hevkariya Amerîka û Rojava ku wek merceki parastina îstiqrarê tê dîtin. Divê Kurd vê rastiyê ji ber çavan winda nekin. Ji ber van rastiyan pir encamên giring di van hilbijartinan de li benda Kurdan in û divê li gor van rastiyan Kurd ji tevbigerin.

# 3 dadgehên îdarî vedibin

**Silêmanî (Rûdaw)** – Kabîneya Pêncemîn ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê di demjimêrên xwe yên dawî de biryar stend ku sê dadgehên îdarî li her sê bajarên mezin wek Hewlêr, Silêmanî û Duhokê dirust bike. Wezîrê Dadê Farûk Cemîl dibêje ku ji ber kêmbûna dozgeran, bi tenê têra Dadgeha Hewlêrê dozger hatine amadekirin. Li gor Serokê Dîwana Çavdêriya Darayî li Silêmanî ji ger dozgerên van dadgehên îdarî wêrek û serbixwe bin, wê bandoreke mezin li ser çareserkirina pirsgirêkên îdarî bikin. Bi vê projeyê wê li Herêma Kurdistanê cara yekem dadgehên îdarî bên vekirin. Tê çaverêkirin ku ji ber bê ezmûnî, wê dadgeh rastî gelek pirsgirêkan bên.

Damezirandina dadgehên îdarî ne bi dilê Dozger Şêx Letîf e. Li gor wî dadwera îdarî ne serkeftî ye. Lê belê pirsgirêk ev e ku li Herêma Kurdistanê sistem û desthilata dadwerî, qels e: "Mixabin sistemeke ne serkeftî ye. Ger xwedî desthilat bin, dozgerên me yên wêrek û serbixwe hene, lê pirsgirêk ew e ku li Kurdistanê desthilata dadwerî tune."

Serokê Dîwana Çavdêriya Darayî li Silêmanî Celal Sam Axa ji biryarê di cih de dibîne û bawer dike ku bi damezirandina dadgehên îdarî wê gelek pirsgirêk çareser bibin: "Ger dozger çavnetirs û serbixwe be û nehêle tu kes destwerdanê di karê wî de bike, wê karûbarên wî gelek baş bimeşin û kesek wê nikaribe li ser gotûbêjan bike."

Ji dema Kabîneya Yekem ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê û heta niha tevahiya pirsgirêkên îdarî ku di navbera wezaret û fermangehên hikûmetê de derdiketin, bi tenê di rêya dirustkirina komîteyên lêkolînê dihatin şopandin. Lê wan komîteyan nikaribûn ji bo çareserkirina wan pirsgirêkan kareki ciddî pêkbînin. Wezîrê Dadê Faruq Cemîl diyar dike ku tunebûna komîteyên lêkolînê yên ku ji aliyê hikûmetê ve dihatin dirustkirin ji hebûna wan baştir bû. Jiber nebûna dadgehên îdarî, heta niha li Herêma Kurdistanê gelek karmend ji aliyê berpirs û rêveberên wan ve bi neheqî dihatin cezadan.

**Osman Baydemir:**

# Divê Almanya jî li gor rastiya Kurdan tevbigere


(Wêne: Rûdaw)

**Berlîn (Rûdaw)** – Şaredarê Bajarê Mezin ê Amedê Osman Baydemir hefta borî bi boneya Konferansa Kurd li Berlinê hatibû Almanyayê û ji rojnameya me re li ser 'Rêlêvebûna Pirsa Kurdî' li Tirkiyê û konferansa li Berlînê nêrînan xwe anîn ziman: "Kurd di pêvajoyeke girîng de derbas dibin û divê bi aqilmendî tevbigerin û ji daxuyaniyên ku rewşê gur dikin divê xwe dûr bigrin. Hikûmeta AKP'ê pêvajoyek daye destpêkirin û çiqasî dilsoz in ewê dem nîşanî me bide. Emê jî li gor vê yekê helwesta xwe zelaltir bikin. Şandeyek ji Sakaryayê hate serdana me û ji me re gotin, beriya ku ew bên Amedê pir dilbitirs bûne. Lê dema me ew bi awayekî germ pêşwazî kirin û li helwesta me mêze kirin fahm kirin û gotin ku 'di rastiyê de tu pirsgirêk di nava wan herdû gelan de nîne, pirsgirêkeke sîstemê, dewletê ye. Axaftina min a 1'ê îlonê ku min gotibû 'bila guleyên ku li leşker bikeve, bila bera min bidin' li ser wan gelek bandor kiribû. Sedema serdana wan bersivdayîna van gotinên min bû."

Baydemir li ser konferansa Kurd li Berlînê jî ev agahî dan: "Li welatekî ku nêzîkî milyonek Kurd lê dijîn bi nasnameyên xwe nayên naskirin.û wekî Tirk, Ereb û Faris tên binavkirin û dîtin. Ev yek nikare bê pejirandin. Eger ev mirov bi nasnameyên xwe werin qebûlkirin, wê baştir întegre bibin û ji bo vê civakê jî sûdmendtir bin. Almanya divê rê li ber civaka Kurd ya li vî welatî veke. Ez ji bajarekî xwedî dîrokek û çandek kevin têm. Li vî bajarî Suryanî, Ermenî, Cihû, Xirîstiyan û Musulman bi hevre di nav aştiyê de dijiyan. Lê bi zorê ev strûktûr hate xirakirin ew kêmnetewe berbi çar aliyên cîhanê hatin sirgunkirin. Ew reng neman êdî. Dema warên xwe terikandin ew pirrengî û aştî bi xwe re birin. Îro jî Kurd li seranserê cîhanê hatine belavkirin. Dema mirov li vê derê li kolanên Berlînê digere, dikare Kurdên Mehabadî, Qamîşloyî, Hewlêrî û Amedî bibîne. Ew sînorên ku mêtîngeran ji bo Kurdan danîbûn li vê derê wateya xwe winda kirine. Pirsgirêkên Kurdên ku li Almanyayê dijîn pirsgirêken Almanyayê ne. Almanya nikare mafên van kesan yên çandî nebîne û nasneke. Çand û fîlozofiya Ewrûpayê dewlemend e û dikare gelek çandan û zimanan di nava xwe de bihewîne. Ji ber ku xwediyê vê fazîletê ye. Almanya divê qebûl bike ku civakek pir-çandî ye û çawa nêzîkî xelkên din yên li vê derê dijîn dibe, wiha jî li Kurdan mêze bike. Çawa ku Tirkiye dixwaze û hewl dide ku îmaja Kurdan ya neheq biguherîne, divê Almanya jî nêzîkbûna xwe ya li hember Kurdên ku li vê derê dijîn biguherîne. Pirsgirêk ne bi asîmîlasyonê, bi întegrasyonê dikare bê çareser kirin. Xelkên ku li sirgunê dijîn, divê xwediyê navgînên xwe îfadekirinê bin û bikaribin dezgehên xwe damezrînin. Ji bo ku karibin bibin beşek civata Almanyayê, divê bingeh û derfet bên pêşkêşkirin."

# Xelatên Musa Anter diyar bûn

**Amed (Diha)** - 17'emîn Xelatên Rojnamegeriya Kurdî û Şehîdên Çapemeniyê ya Musa Anter ku ji aliyê rojnameya Azadiya Welat û Günlükê ve hate lidarxistin, diyar bûn. Xelatên Rojnamegeriya Kurdî û Şehîdên Çapemeniyê ya Musa Anter ji beşên nuçe - bi kurdî û tirkî - wêne û karîkaturê pêk dihat. Herwiha ji bilî van beşan di beşên wêne, karîkatur û beşa kurdî de Xelatên Juriyê yên Taybet hatin dayin.

Xelatên Rojnamegeriya Kurdî û Şehîdên Çapemeniyê ya Musa Anter di 27'ê îlona 2009'an de li Navenda Ciwanan a Cegerxwîn li Amedê tê dayîn. Kesên ku xelat wergirtine ev in: Di beşa kurdî ya nûçeyan de nûçegihanê DİHA'yê Erdoğan Altan bi nûçeya "Beranberî sewalan pasdar rehîn girtin" hejayî xelata yekemîn hate dîtin. Di vê beşê de nûçeyên hêjayî xelata duyemîn û sêyemîn nehatin dîtin.

Herwiha ji bo Gün TV'yê ku ligel zextan de israra xwe ya weşana kurdî didomîne, Xelata Juriyê ya Taybet hate dayîn. Mamoste Medya Örmek (9) ku ji ber perwerdehiya kurdî lêpirsîn lê hate vekirin hêjayî Xelata Rûmetê ya Kurdî hate dîtin. Di beşa nûçeyan a tirkî de nûçegihanê Diha'yê Hikmet Erden bi nûçeya "Di wergera zimanê nayê zanîn de Yaşar Kemal û Celal Talabanî hatin kuştin" û ji rojnameya Batman Postası Mehmet Karabaş bi nûçeya "Li çiyayê Helkîsê gorên tomerî" hêjayî xelata yekemîn hatin dîtin.

Ji rojnameya Tarafê Volkan Eser bi nûçeya "Ji polîsan testeke ecêb: şopa kevir heye?" hêjayî xelata duyemîn hate dîtin. Ji rojnameya Evrenselê Elif Görgü û Meral Peker bi nûçeya "Ji TSK'ê Vebûna Elewiyan" hejayî xelata sêyemîn hate dîtin. Di beşa karîkaturan de xelata yekemîn ji bo Aşkin Ayrancıoglu, xelata duyemîn ji bo Özgür Evran û xelata sêyemîn ji bo Murat Îpek hate dayîn. Her wiha karîkaturê Mahmut Erdal Karakoç jî hêjayî Xelata Juriyê ya Taybet hate dîtin.

Di beşa fotografan de Selahattin Kahraman bi fotografê "Demokrasiya Dîtir" hêjayî xelata yekemîn hate dîtin û Seda Suna



bi fotografê "Tabut" hêjayî xelata duyemîn hate dîtin. Müjgan Arpat bi fotografê "Hilweşîn" hêjayî xelata sêyemîn hate dîtin. Ferhat Aslan jî bi fotografê "Avabûna Rojê" hêjayî Xelata Juriya Taybet hate dîtin. Xelata Taybet a Gurbeteli Ersöz ji bo Xwedî û Berpirsê Karê Nivîsarên a Azadiya Welat Vedat Kurşun û Kordînatorê Weşanê yê Gün TV ku li girtîgeha Amedê Tîpa D dimînin û nivîskarê rojnameya Günlükê Veysi Sarisozen ji ber dozên lê hatine vekirin hate dayîn.



# Li Kurdistanê cejna reş


(Wêne: Diha)

**Amed** - Li Bakurê Kurdistanê gelek deveran Cejna Remezanê wekî salên berê bi coş nehat pîrozkirin. Parlementer û rêveberên DTP'ê, li Amed, Colemêrg, Çelê, Wan, Bazîd, Tetwan, Gever, Elbak, Diyadin, Erdîş û Stenbolê bi munasebeta Cejna Remezanê li goristanan geriyan, çelengên reş danîn ber deriyên Rêxistinê AKP'ê û gorên wek Musa Anter, Vedat Aydin û kesên di têkoşîna aştî û demokrasiyê de jiyana xwe ji dest dabûn ziyaret kirin.

Li Amedê Koma ku ji Wekîlê Serokê Koma Parlementoyê ya DTP'ê û Parlementerê DTP'ê yê Amedê Selahattin Demirtaş, Gülten Kışanak, Aysel Tuğluk, Serokê DTP'ê ya Amedê Fırat Anlı, Wekîlê Şaredarê Bajarê Mezin a Amedê Ali Şimşek, rêveberên rêxistina bajêr û navçeyên Amedê, Dayikên Aşitiyê û rêveberên MEYA-DER'ê pêk dihat çûn li goristanan geriyan. Komê, li Goristanên Yeniköy, Ali Pinar û Şehitlikê geriyan û ligel goristana Hüsnü Ablak û Cihan Deniz gorên kesên din ku dêkoşîna aştî û azadiyê de jiyana xwe ji dest dabûn ziyaret kirin.

# "Kurd gihîştine qonaxa konferansa netewî"

*(Ji Rûpela 1)*

***Ji aliyekî ve gûftûgoyên li ser çareseriyê û ji aliyê din êrîşên li ser partiya we didomin. Cara yekem di meha nîsanê de, cara duyem û sêyem jî di meha îlonê de gelek endam û nûnerên DTP'ê hatin girtin. Çawa ev girtin û axaftinên aştixwaz li gel hev dimeşin?***

Ji bo êrîşên dewleta Tirk li dijî gelê Kurd gelek sedem hene. Heta destûr neyê guhertin wê êrîş, binçavkirin, girtin ranewestin. Lê wek berê êdî nikarin Kurdan înkar bikin. Sedemên êrîşên xwe guhertine. Niha nabêjin we gotiye em 'Kurd in, zimanê me kurdî ye, ev tişt qedexe ne.' Lê dibêjin têkiliya we bi PKK'ê re heye. Sedemê hemû girtin û binçavkirinên rojane ev e. Wisa xûyadike ku di sala 2009'an de wê bi vî awayî êrîşên xwe berdewam bikin.

***Piştî ku Obama hat Enqerê û li parlamenê bi DTP'yiyan re rûnişt û li parlamenê axifî, herkes hevîdar bû ku êdî dewleta Tirk DTP'ê nas bike, pê re têkeve diyalogê û êdî êrîşê siyasetmedarên Kurd neke. Çima wiha neqewimî?***

Em nafikirin ku di vê projeya êrîşan de, qelskirina DTP'ê de dewleta Tirk bi tenê tevdigere. Ev projeyekî rojane ye û piştgirên hundir û derve hene. Li hundir eniya nijadperestiyê, artêş û burokrasî heye. Piştgirên projeyê yên li derve Amerîka û Yekitiya Ewrûpa ne. AKP û dewleta Tirk ji wan piştgirî nestîne nikare bi serê xwe gav bavêje. Wek tê zanîn perçekirina Kurdistanê projeya Ewrûpa ye. Niha jî bi vê rengê didome.

***Armanca girtinên dawîn bir doza girtina DTP'ê re eleqedar e?***

Siyaseta înkar û îmhayê êdî nikarînin bimeşînin. Têkoşîna gelê Kurd gelek planên wan vala dexist. Lê li gor demê ew jî ji êrîşên xwe re hertim bahaneyan dibînin. Gelê Kurd ji sala 1991'an heta îro bi navê xwe û bi riya saziyên xwe siyasetê dike. Ev siyaseta legal ku nêzîkî 20 sal in destpêkiriye de Kurdan gelek helwestan lidarxist, gelek partî û



sazî avakir; dewleta Tirk hemûyan girt. Endamên wan bi hepis û qedexekirina siyasetê ceza kirin. Ev berdewama siyaseta înkarê ye. Doza li dijî DTP'ê jî hexeyek ji vê zincîrê ye. Em vê dozê wek 'şurê demokles'dibînin. Dixwazin me bi vê dozê bitirsînin û tevgeriya me teng bikin. Li dijî AKP'ê doz hat vekirin di çend mehan de bi dawî kirin, lê li hemberê me ev du sal in bedewam dike. Ev tiştekî ne normal e.

***Hinek dibêjin ku li hemberê AKP'ê û siyaseta wê ya vekirinê ji aliyê MHP, CHP, artêş û burokrasî eniya nijadperest vebûye. AKP jî ji tirsa vana êrîşê Kurdan dike. Niyeta wê ne xirab e...***

Rast e, gotinên wiha em jî dibihîsin. Lê kî van gotinan dibêje? Li Egeyê, Marmara û herêma Behraspî, li metropola tu kes wiha nafikire. Herkes aştî dixwaze. Li gor encamên ankêtên dawîn gelê Tirk ji sedî 50'î zêde çareserî û aştiyê dixwaze. Tenê AKP'yîyên li Amedê, Batman û Mêrdînê, ango yên li Kurdistanê wiha dibêjin. Ew gotin ne rast in, bahane ne.

***Heyeta DTP'ê çû Herêma Kurdistanê û bi Talabanî û Barzanî re hevdîtinan lidarxistin. DTP çima serdana Kurdistanê kir û di van hevdîtinan de çi hat axaftin?***

Îro li Başûrê Kurdistanê, rastiyeke li ber çavan heye. Kurd li vê herêmê bûne xwedî otorite, bûne quwet. Hemû dinya vê yekî dibîne û qebûl dike. Ev rastî siyaseta her çar dewletên ku xaka Kurdan di nav xwe de par kirine, guherand. Herwiha nêzîkbûna dewletên Ewrûpayê û Amerîkayê jî guherand. Nêzîkbûna Kurdan jî guherand. Êdî ne tu kes dikare Kurdan berî hevûdû bide, ne jî Kurd şerê birakujîyê dikin. Kurd ketine asteke nû. Partiya me DTP jî ji bo yekitiya Kurdan û di nava Kurdan de aştî ji bo herdemî pêkbê serdana Kurdistanê kir. Armanc xurtkirina têkiliyan e. Dewleta Tirk jî têkiliyên xwe bi Herêma Kurdistanê re xurt dike, ew jî bi wan re peymanan çêdikin.

***Di serdaneke wiha ya bi wate de gelo peymanên stratejîk amadekariyên tevgerên nû tunene?***

Belê hene. Em têkiliyên bi Herêma Kurdistanê re girîng dibînin. Amerîka, Yekitiya Ewrûpa, Tirkiye, Iran û Suriye jî dixwazin têkiliyên wan bi Herêma Kurdistanê re hebin. Di nava Kurdan de pêvajoyeke nû destpêkiriye. Pirsgirêka Kurd ketiye astekî wisa ku êdî herkes çareseriyê dixwaze. Hesabê herkesî li ser çareseriyekî ye. Di demeke wiha de divê Kurd têkiliyên xwe xurt bikin. Gelê Kurd bi têkoşîna xwe ya li her çar perçeyan ketiye asteke nû. Ev jî asta yekitiyê ye. Lê yekitiya ne di gotinê de, di pratîkê de. Êdî Kurd mecbûr in ku konferanseke netewî lidarxin, mecbûr in ku yekitiya xwe bi organizasyonekî wiha pêjde bibin. Em helwestên Birêz Barzanî û Talabanî jî baş dibînin û hêvî dikim ku encameke pozîtîf derkeve holê.

***Ji bilî xwesteka civandina konferansa netewî, gelo heyeta DTP'ê ji Talabanî û Barzanî tu tiştekê din nexwestin?***

Mînak wek ku Özal di sala 1993'an de ji Talabanî xwestibû, niha rayedarên Herêma Kurdistanê di pêvajoya çareserkirinê de navbenkarî bikin? Helwestek wiha ne xirab e, ji bo berjewendiya gelê Kurd pêwîst ê jî. Eger ku karibin roleke wiha bilîzîn wê ev yek pêvajoyê bi lez bike, xurt bike. Wê daxwaza Kurdan xurt û zelal bibe. Di dîplomasiyê de tu çiqas xurt bî ew qas bandara te heye û dikarî xwestekên xwe bidî qebûlkirin.

**Îran û Rojhilatê Kurdistanê:**

# Mêr têne sêdaredan, jin xwe dikujin

**Sabir Qadirî**

**Tahran (Rûdaw)** – Li gor agahiyan di sala 2008'an de li Îranê 350 kes hatine sêdaredan. Ji wanên ku hatine idamkirin 40 kes Kurd bûn. Di 6 mehên despêka vê salê de ji 300 kes hatine sêdaredan ku 35 ji wan Kurd bûn. Herwiha li Îranê di heman demê de bêtirî 15 rojname û kovar hatine qedexe kirin. Di derbarê girtiyan de ji ti amar li ber dest ninin. Ji aliyê din ve li Rojhilatê Kurdistanê xwekuştina jinên Kurd ji her ku diçe zêde dibe.



Rêxistina Lêborîna Navnetewî (AÎ) di nûtirîn rapora xwe ya di derbarê binpêkirinên mafên mirovan ên li Rojhilatê Kurdistanê de destnişan dike ku binpêkirinên mafên mirovan gelek berçav e. Weke ku tê zanîn rûniştvanên Rojhilatê Kurdistanê 12 milyon kesin û ji sedî 15 ji rûniştvanên Îranê pêk tînin. AÎ bahsa çendîn cûrên binpêkirinan dike: "Di warê civakî, siyasî, kulturî û aborî de mafên gelê Kurd li Îranê tên binpêkirin. Bê sedemeke ronî, çalakvanên mafên mirovan, rojnamevan, çalakvanên siyasî, civakî û kulturî tên binçavkirin û bi cezayên giran tên cezakirin."

Berdevkê Rêxistina Mafên Mirovan li Kurdistanê Îclal Qewamî di daxuyaniyeke ji bo Rûdawê binpêkirinên mafên mirovan ên li Rojhilatê Kurdistanê wiha radigihîne: "Binpêkirinên mafên mirovan di warên cuda de li Kurdistanê, ji hemû cihên din ên Îranê berçavtir e. Di wê derbarê de amareke fermî di destê me de nîne. Lê bûyerên piştî hilbijartinan rêjeya binçavkirinên îsal ji salên berê zêdetir kirine." Herwiha di demên dawî de binpêkirinên di warê olî û regezî de ji tên dîtin û niha bi dehan çalakvanên olî hatine binçavkirin. Minaka herî berçav jî, binçavkirina Hakimê Şerî yê Kurdistanê Hesen Emînî ye.

Zêdetirê kesên ku li Rojhilatê Kurdistanê tên girtin, bi tawana "hewldana li dijî ewlekariya netewî" tên cezakirin. Di vê derbarê de parêzer û mafnas Salih Nîkbext ji Rûdawê re wiha dibêje: "Ev sûcan dixin stûyê hemû dijberên hikûmetê. Di destûra Îranê de hin xal hene ku mafê azadiya ragehandin, azadiya pêkanîna partî û organîzekirina meşan dide."

**Xwekuştina jinan zêde dibe**

Xwekuştina jinan ji yek ji wan pirsgirêkên civakî ye ku ji encama binpêkirinên Komara Îslamî ya Îranê, rêjeya xwekuştinê roj bi roj di bilindbûnê de ye. Li gor îstatîstîkên fermî di sala 1998'an de li Rojhilatê Kurdistanê 455 jinan xwe şewitandine, lê di sala 2008'an de ew hejmar zêde bûye û gihiştiye 600 jinan.

Di derbarê diyardeya xwekuştina jinan li Rojhilatê Kurdistanê de Nigîn Şêxulislamî wiha dibêje: "Bi sedema yasaya Komara Îslamî ya li dijî jinan, jinên Kurd ji aliyê civak û malbatê ve bi tundtirîn şêweyî tê bêmafkirin. Lewma ew rêya xwekuştinê dihilbijêrin. Eger ew yasa neyên guhertin, wê xwekuştina jinan her zêde bibe."

**Di nav mehekî de 2 mirî, 2 birîndar**

# Li Sine êrişên ser nûnerên rejîmê didomin

**Nihad Rojhilatî**

**Tahran (Rudaw)** – Li paytexta Eyaleta Kurdistanê Sineyê êrişên li dijî nûnerên rejîma Îslamî didomin. Di êrişa dawîn de Nûnerê Parêzgeha Kurdistanê - yek ji 4 parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê - yê li Meclisa Xibregan a Serokê Îranê, Mamoste Şêxulislam li bajarê Sine hat kuştin. Şêxulislam di dewra duyem û sêyem de endamê Meclisa Xibregan bû.

Di nava 2 hefteyan de 4 karbidestên fermî yên Komara Îslamî li Sine rastî sûiqastan hatin. Roja 17'ê îlona 2009'an, dema ku Şêxulislam ji mala xwe derdiket, ji aliyê çekdarên nenas ve hate gulebarankirin û jiyana xwe ji dest da.

Di hefteyên borî de jî, sê karbidestên fermî ên Parêzgeha Kurdistanê li bajarê Sine ketine ber êrişa kesên nenas. Şêxulislam kesê duyem e ku di encama wan êrişan de hate kuştine.



*Mamoste Şexulislam*



*Mele Burhan*

Di êrişa yekem de, Mele Burhan Elî ku medya Komara Îslamî ew wek aligir û berevanê Şoreşa Îslamî binav dikir, roja 14'ê îlona 2009'an di mala xwe de hat kuştin.

Di çend rojên borî de jî Dozgerê Dadgeha Şoreşa Parêzgeha Kurdistanê, Kamyabî û Dadwerê Taya 4. ya Sineyê, Hesen Dawteleb ji aliyê kesan nenas ve hatin lêdan û bi êrişa çekan bi girani birîndar bûn.

Serokê Serdozgeriya Giştî ya Parêzgeha Kurdistanê, Elî Ekber Gerusî idia kir ku 'grûbên dijî şoreşê' ew kiryar pêkanîne. Heta niha grûbek an jî kesekî berpirsiyariya wan 4 êrişan li ser karbidestên Komara Îslamî li bajarê Sine negirtiye ser xwe û di vê derbarê de ti kes nehatiye girtin. Li aliyê din li bajarê Sine rewşa awarte hatiye ragihandin.

# Heyeta DTP'ê û nûnerên Rojava civiyan



*(Wêne: Rûdaw)*

**Hewlêr (Rûdaw)** – Îna borî serokê Partiya Civaka Demokratîk (DTP) Ahmet Türk li Hewlêrê, li otêla Şeraton, bi nûnerên partiyên Kurdên Rojava, yên ku li başûrê Kurdistanê ku nûnertî ne, civiya. Nûnerên partiyên Rojavayê Kurdistanê yên ku tevlî civînê bûn, ev bûn: nûnerê Partiya Çepê Kurd li Başûr Şelal Gedo; berpirsyarê ragihandinê yê partiyê Fethullah Huseynî; Nûnerê Şepêla Pêşeroja Kurdî li Başûr Mihemed Hemo û nûnerê Partiya Demokrata Kurd (Elpartî) li Başûr Behcet Beşîr. Di vê civînê de hevseroka DTP Emine Ayna û Hatip Dicle jî amade bûn û bi giranî bahsa xurtkirina pêwendiyên Kurdên herçar perçeyên Kurdistanê hate kirin. Nûnerên partiyên Rojava li ser projeyên nijadperest yên li dijî Kurdên Rojava rawestiyan, bi taybetî zordariya ku di vê dema dawiyê de bi tundî jî hêla rêjîma Sûriyê de li ser Kurdan tê meşandin. Rêxistinên Rojavayî herweha giringiyeke mezin dan rola DTP'ê di rêya çareserkirina pirsgirêka Kurd li Bakurê Kurdistanê û li Turkiyê. Ji hêla xwe ve Ahmet Türk pêşxistina têkiliyên di navbera Kurdan de weke bingeha bihêzkirina rola Kurdan li herêmê û di qada navneteweyî de nîrxand. Emine Ayna jî zora ku li Kurdên Rojava yên di bin desthilatdariya Sûriyê de tê kirin, wekî zoreke "li dinyayê bêminak" binavkir. Herdû alî di wê baweriyê de bûn ku hevgirtin û xurtkirina têkiliyan gava yekem e ber bi bidestxistina mafan de.

# Xwe tevî zarokên xwe avêt Firatê

**Heleb (Rûdaw)** – Berî Cejna Remezanê bi dû rojan Cihan Reşo Berawad a 25 salî xwe li gel hersê zarokên xwe ji ser Pira Qere Qozatê - ku herdû bajarokên Kobanê û Minbecê digihîne hev - avêt çemê Firatê û dawî li jiyana xwe û Fewzî yê dû salî û Rosîla sê mehî anî û kurê wê yê mezin jî ji mirinê filitî. Wekî ku hat bihîstin Cihan ji aliyê mêrê xwe û malbata wî ve dihat lêdan û hevserê wê bi tundî li gel wê tevdigeriya, herwiha rewşa wan a aborî jî pir xirab bûye.

Eger jinên Kurd li Sûriyê ji ber tundiya nav malê jiyana xwe bidawî tînin, lê mêr jî ji ber rewşa aborî û feqîrtiyê xwe dikujin. Li gor daxuyaniyeke Rêxistina Mafên Mirovan li Sûriyê MAF roja 14'ê îlona 2009'an Azad Mihemed Emîn Mirad daniştvanê gundê Girhok li Şam a paytexta Sûriyê bi tifinga nêçîrê gule berdan serê xwe û xwe kuşt.

Wek gelek xort û malbatên Kurd, Azad jî ji navçeya Cizîrê ji bo kar bar kirîbû Şamê û li ba xwediyê bistaneki kar dikir, lê ji ber rewşa aborî ya xirab, pirsgirêkên civakî û koçberiya li neçarî, wî biryara bidawîanîna jiyana xwe sitend û cibicih kir.



Rêxistina MAF'ê herwiha da zanîn ku Azad ji yek ji Kurdên bênasname (biyanî) li Sûriyeyê bûye û ji bo debara malbata xwe çûbû Şamê, lê dijwariyên jiyanê û destkurtî bûn sedemê xwekuştina wî.

# Li Hesekê kongra sendîkaya parêzeran hat lidarxistin



**Rûdaw (Hesekê)** - Roja 14'ê îlona 2009'an kongra Sendîkeya Parêzerên Parêzgeha Hesekê lidarket. Kongre bi amadebûna berpirsyarê Partiya Baas, şaxê Hesekê, nûnerê navenda sendîkeya parêzeran ya Şamê, pêk hat. Slogana kongrê jî gotinên Serokkomar Beşar Esed bûn: "Pêkanîna demokrasiyê di nav sendika û rêxistinên gelêri de, pêdiviyeke sereke ya meşa me ya niştimanî ye."

Li gor daxuyaniya Yekîtî Midya hejmara parêzerên parêzgeha Hesekê 872 kesin û ji wan 421 Kurd in. Di nav wan de 60 parêzerên Kurdên Baasî û komunîst hene. Rêjeya parêzerên Kurd ji sedî 56.3 ye û li Hesekê 372 parêzerên Ereb û netewên din hene.

Di kongrê de jî Lîsta Kurdan 2 parêzer ji bo rêveberiya sendîka Hesekê, 3 parêzer jî ji bo kongra giştî ya sendîkayê hatin hilbijartin. Kongre di bin zextên dij demokratîk yê Baasiyan de derbas bû.

Hilbijartinên sendîkeyê jî çar salan carekê çêdibin. Heft endam ji bo konseya sendîkeyê û deh endam ji bo kongra giştî ya sendîkeyê tên hilbijartin. Li gor parêzerên beşdarî hilbijartinan bibûn, ev hilbijartin jî wek yên din bi awayekî dûrî yasayên hilbijartinan û di nav gelek destdirêjî û kirinên dij demokrasî de hatin pêkanîn. Parêzer Hesen Biro wiha bahsa kongrê dike:

"Di rûniştina roja hilbijartinan de gelek gengeşî û tevlihevî derketin. Sedema sereke jî ew bû ku listeyeke navan ya çapkirî ya Partiya Baas û eniya wê li endaman hatibû belavkirin. Gelekan ji hevkarên me yên parêzer ev kirin weke kirineke dijî yasaya birêvebirina hilbijartinan nirxandin. Ji ber ku divê kaxiza spî bê nav û tenê bi mohra sendîkeyê bê belavkirin. Kesên ji birêveberên Partiya Baas yên beşdar destdirêjî kirin û parêzer neçar dihiştin ku parêzerên Baasî û yên di eniya wan de bêne hilbijartin. Hemû zerfên hilbijartinê yên endaman hatin jimartin û her zerfek hejmarek li ser hate nivisandin û vê yekê rê li ber gelek endaman girt ku bi reheti dengên xwe bidin. Bi vî awayî dihat naskirin, bê kijan parêzer wê deng bide lîsteya Baasiyan û eniya wan û wê kijan nede. Ji ber van destdirêjî û kirinan sê caran pêvajoya hilbijartinan hate rawestandin. Zêdeyî deh şikayet jî hêla hevkarên me yên parêzer ve hatin tomarkirin û di bin hejmara 1009-1000 de jî diwana konseyê re hatin şandin. Dengdanê heta roja dinê piştî nivro dewam kir. Ji 872 parêzerên ku navên wan di beşê sendîkeyê de tomarkirî ne 659 parêzeran dengên xwe dan."

Çavdêr dibêjin ku parêzerên Kurd tevlî hemû reng û awayên zordarî û tirsandinê karîbûn bibin xwedî helwest û çend nûnerên xwe hilbijêrin.

Herweha komîta çavdêriya hilbijartinan jî ji endamên Partiya Baas bûn. Herwisa bi alîkariya çend parêzerên Kurd ku xwedî helwestên qels bûn, eniya dijber dikaribû zirareke mezin bide lîsteya parêzerên Kurd. Di encamê de parêzerên Kurd du nûnerên xwe, Ebdilezîz Hesen û Diya Hesen, şandin konseya beşê sendîkeyê û dikaribûn sê hevkarên xwe jî bişînin kongra sendîkeyê ya navendî. Parêzerên Kurd yên serkeftî ev in: Dilşa Silêman Eyo, Eymen Silêman û Zerdeşt Mistefa.

**Kurdê xelatgirê nîşana Almanya ya xizmetguzariyê ”Bundesverdienstkreuz” Mehmet Tanrıverdi:**

# “Întegrasyon pira navbera Kurd û Almana ye“

**Zeki Özmen**

**Marburg (Rûdaw)** - BAGIV (Saziya Hevkariya Kar ya Komeleyên Biyaniyan - Bundesarbeitsgemeinschaft der Immigrantenverbände) ev 25 sal in ku li seranserî Almanyayê hem karê întegrasyona biyaniyan di nava civaka Alman de dike û hem jî berjewendiyên wan li hember rayedaran diparêze. BAGIV ji 6 saziyên ji 6 neteweyên cuda pêk tê. Ji bilî saziya Kurdan KOMKAR, saziyên van neteweyan endamên wê ne: Spanî, Yûnan, Ermenî, Sirbî û Asûrî.

Serokê vê saziyê Kurdekî bi navê Mehmet Tanrıverdi ye. Tanrıverdi ji mêj ve li Almanya dijî û ji bo xebatên xwe yên di derbarê întegrasyona biyaniyan hefta borî xelata “Bundesverdinstkruez / xizmetguzariyê“ vergirt. Xelata Tanrıverdi wê di 5’ê cotmehê de ji aliyê Serokkomarê Almanya Horst Kohler ve bi merasimekî bê dayîn.



*Tanrıverdi di heman demê de yek ji şampiyonên maratonê li Almanyayê ye*

BAGİV’a ku Mehmet Tanrıverdi serokatiya wê dike, wek saziyeke banî ya komelên neteweyên cuda ye. Mehmet Tanrıverdi dîtinên xwe yên li ser pêvajoya întegrasyona biyaniyan a di nava civaka Alman û bi taybetî jî li ser rola Kurdan ya di vî warî de ji Rûdawê re anî ziman.

**”Divê komeleyên Kurdan bibin dengê endamên xwe”**

Serokê BAGIV’ê Mehmet Tanrıverdi hê di destpêka hevpeyvînê de rexneya ‘ka çima saziya wî di nava raya giştî ya Kurd de zêde nayê nasîn‘ bersivand. Tanrıverdi rexneyê mafdar dibîne û dibêje ku pêwist e ew di warê danasîna BAGIV’ê de çalaktir bibin. Ew li ser babetê wisa pê de diçe: “Lê belê divê em dîroka diyasporaya Kurd jî li ber çavan re derbas bikin. Di salên 60 û 70’an de karker hatin û dû re di salên 80 û 90’an de penaberên Kurd hatin Almanyayê. Pêvajoya hatina Kurdan di rewşeke ciwan ya dînamîk de ye. Di vê çarçovê de bêguman divê peywira komeleyên Kurdan ya ku divê wekî dengê endamên xwe bin li bîra wan were anîn. Ji bilî vê yekê, dîroka medya û çapemeniya Kurd nû ye. Ji wê yekê ji bo karê me Kurdan yê danesînê ji berya heta demeke kin delfet nebûn. Rê li ber cihgirtina me ya di medyayê de dihate girtin. Ji wê yekê mirov nikare me li ber koçberên mîna yên Spanî, Îtalî an Tirk muqayese bike. Bêguman em dixwazin bêtir li ser me nûçe di medyaya Kurdî de derkevin. Hürriyet û yên din ev bi salan e ku ji hêla xwe ve cih didin koçberên Tirk.“

Mehmet Tanrıverdi heta niha gelek caran wekî serokê BAGIV’ê tevlî zîrveyên entegrasyonê yê Hikumeta Alman jî bû ye. Ew bi bîr dixe ku ew wekî sazî berjewendiyên komên biyaniyan diparêzin û di wê çarçovê de pêşniyarên ji bo çareseriya pirsgirêkan di zîrveyê de dikin. Tanrıverdi herwiha dibêje ku ji bilî peywira wan ya bingehîn a ku ji şêwirmendiyê pêk tê, ew di warê bicîhanîna biryaran de jî li wir rolekî dilîzin. BAGIV’ê di çarçoweya vê zîrveyê de pêkanîna projeya bi navê “Hesasîkirina dê û bavan ya ji bo perwerdê“ li ser milê xwe girtiye. Vê saziyê ji bilî vê yekê li hember Konfererensa Wezîrên Perwerdê ya di Zîrveya Întegrasyonê de pêk hat, peywira belavkirina têgihiştina li ser babeta perwerdihiyê jî li ser xwe girtiye.

Mehmet Tanrıverdi li ser peyva “întegrasyon“, ya ku bi awayên cuda tê şirovekirin jî dîtina xwe anî zimên. Tanrıverdi vê peyva her roj li Almanyayê di rojevê de ye wisa bi lêv dike: “Ez di bin vê peyvê de erêkirina daxwaza daketina di nava civakê de, ya beyî ku kesek nasnameye xwe ji dest bavêje fêm dikim. Yanî ev parçeyekî dayin û standinê ye.“

**”Kurd di nîvê pêvajoya integrasyonê de ne”**

Tanrıverdi girêdayî heman babetê di wê baweriyê de ye ku civaka koçber û penaber ya Kurd di nîvê pêvajoya întegrasyonê de ye. Ew hem nêrînên xwe yên li ser vê yekê û hem jî zehmetiyên ku Kurd li Almanyayê pê re rû bi rû man, wisa tîne zimên: “Digel ku şertên me Kurdan ne wekî yên welatên Spanya, Yûnanîstan an Tirkiyeyê yên ku karker rêkirin Almanyayê ne jî, me di warê pêvajoya întegrasyonê de gavake mezin şûn xwe de hiştiye. Perwerdehiya Kurdî ya zimanê zikmakî di dibistanan de mîna ya bi tirkî, îtalî an Yûnanî nîn e. Bicihbûna Kurdan ya di medyaya fermî ya dewletê de heta ji berya çend salan dihate astengkirin. Herwiha Kurdên koçber û penaber ji şêwirmendiyên civakî jî bêpar bûn. Koçberên din bi riya saziyên xêrê yên cure bi alîkariya dewletê şêwirmendîtiya civakî werdigirtin. Dewletê di warê naskarina civaka Kurd de jî zehmetî dideranîn. Ji ber van tecrûbeyan mirov dikare bibêje ku Kurdên li Almanyayê hatin paşguhkirin.“ Mehmet Tanrıverdi dibêje Kurdan zû fêmkirin ku bikaranîna gelek mafan bi bi riya wergirtina hemwelatîbûna Alman pêk tê û di vî warî de di bin bandora neyînî ya welatên ku jê hatine de nemane.

Ew di berdewamiya bersiva xwe de dibêje ku ewê li ser kêmasiyên heyî jî bêdeng nemîne û van rexneyan bi rêz dike: “Hêjî hejmara ciwanên betal û yên dibistan nîvço hiştî bilind e. An ka em li rola nêzîkbûna bi jinan re binêrin. Pêwistiyeke me ya mezin bi vebûnekî heye, ji bo kêmasiyên ziman û çandê ji holê werin rakirin. Ez giringîya wê yekê jî dibînim ku komeleyên Kurdan, sazî û kesayetî rola xwe careke din di ber çavan re derbas bikin. Divê ew bêhtir rola xwe ya navbeynkariyê bibînin. Divê em Kurd bêhtir di nava siyasetê de aktîf bibin û bikevin di nava saziyên civakî de. Divê em bêhtir beşdarî komele, partî û civakê bibin.“

Li ser dîtinên ku civaka Alman, civakeke girtî ye û ev jî dibe sedemeke din ya ku întegrasyon zû di navbera biyanî û Almanan de pêk nayê, Tanrıverdi wiha diaxive: “Mesele ne meselaya ku civaka alman civakek e girtî ye. Di gava yekemîn de pêdewî bi hewldanên dewletê bi xwe heye. Berê hatina biyaniyan wekî lêzêdebûneke erênî nedihate dîtin. Di vî warî de bi taybetî rola dewletê ya liserxwegirtina afirandina strukturên ku nehêle ‘civakên paralel’ biafirin heye. Bi dîtina min dewlet wextekî dirêj wekî temaşevan li pêvajoya întegrasyonê nêrî û heta astekî jî ew kire di talokeyê de. Ku ne wisa be, ma nexwe çawe çê dibe ku zarok li pişta hewşên mizgeftan dersên Quranê dibînin. Memur bi vê yekê baş dizanin. Vê rewşa bolebat ji nedîtinî ve tên û ev yek jî tê wateya pejirandinê. Peywira bi hevre xwedîkirina dewletê li kuderê dimîne? Dewlet li peywira xwe xwedî dernakeve.“



**”Întegrasyon ne asîmlasyon e”**

Li Almanyayê bi dehan komel û saziyên Kurdan hene lê belê ew li ser babeta întegrasyonê zêde bêdeng û bêçalekî ne. Mehmet Tanrıverdi vê yekê bi nûbûna komeleyên Kurdan ve girêdide û wisa pê de diçe: “ Civaka Kurd ya salên 60-70’an nerêxistinkirî bû. Di salên 80’an de bi hatina penaberên Kurd re hejmara avakirina komeleyan bilind bû. Berê van jî li welêt bû û di bin bandora neyînî ya bûyerên li welêt de bûn. Întegrasyon û tevlîbûn di programa wan de nebûn. Daxwaza wekheviyê, tevlîbûn û daxwaziya mafê xwe ji salên 90’an û pê de destpêkir. Kurd hingî nû pê hisiyan ku pêwist e ew pêdewiyên xwe bilêv bikin.“

Tanrıverdi herwiha dibêje ku pêwist e êdî komeleyên Kurd fêm bikin ku civaka Kurd ya li Almanyayê parçeyekî civaka Alman e û ji wê yekê bêhtir xwe bidin pêş: “Divê Komeleyên Kurd bêhtir xwe derînin pêş, ji bo pêşdarazî werin rûxandin û li hember dîskrîmînaliyê bisekinin. Pêwist e komeleyên Kurdan ji bo hemû partî û komên civakî vekirî bin û xwe marjînal nehêlin.“

Serokê BAGIV’ê Mehmet Tanrıverdi di wê baweriyê de ye ku tenê aliyê erênî yên întegrasyonê hene û bi van gotinan dawiyê li hevpeyvîna xwe tîne: “Întegrasyon ne asîmlasyon e lê belê bicihbûna bi awayekî wekhevî ya di nava civakê de ye. Tenê kesê întegrasyonê bikin di nava pratîkê de, dikarin bibin parçeyekî civakê, bi xwe sûdê wergirin û herwiha kêrî kesên din jî werin. Kî întegrebûyî be, serbixwe ye, di nava misogeriyê de ye û ne îzolekirî ye. Kurdên întegrebûyî di bin pira di navbera welatê ku jê hatine û welatê ku ji xwe re nû hilbijarine. Herwiha ew li seranserî cîhanê dibin danasînerên welatê ku jê hatine.“

# ”Almanya piştgiriya vebûna Kurd dike”



*(Wêne: Rûdaw)*

**İsmet Siverekli**

**Rûdaw (Berlin)** - Parlamentera Kurd Hêlîn Evrîm Baba li paytaxa Almanya di meclîsa Berlînê de di nav refên Partiya Die Linke de xebatên xwe yên siyasî dimeşîne. Ji bo naskirina nasnameya siyasî ya Kurdan ew bi salan e li Almanyayê têdikoşe. Hêlîn ji bo encam bigre, beriya deh salan bûye endama Partiya Sosyalist ya Demokratîk (PDS). Di roja me de, xebatên xwe yên polîtîkayê Die linken (Partiya Çep ya Almanya) de dimeşîne. Die linke di sala 2007’an de bi yekbûna PDS û Alternatifa Hilbijartinan ya Dadwariya Kar û Civake (WASG) hat damezrandin.

Parlamentera Kurd Baba ku di heman demê de Berdevka Jinan a Senatoya Berlînê ye. Hêlîn Baba hertim li dîasporayê weke jineke Kurd zehmetî kişandiye.

Baba diyar kir ku, Kurd di siyaseta Alman de di demê davîyê de bêqidûm mane û sedema vê jî weha tîne ziman: ”Kurd, bi siyaseta Alman re eleqedar nabin. Ji bo vê yeke di nave civaka Alman de baş nayin naskirin û hemberê vê xebatên wan tine. ”

Baba dibejê, qeyrana aborî û siyasî ya li Almanyayê kriza mêran e. Baba di der bare polîtîkaya Almanyayê hemberê Kurdan de, weha dibêje: ”Almanya ji bo li heremê xwedî gotin be, bi Kurdan re têkilî daniyê ”

Em bi nave Rûdawê çûn nivîsgeha wê û ji wê derê de hevdîtineke pêk anî. Sohbeta me li nivîsgeha Parlamena Berlînê dest pê kir û pirsa min ya yekem li ser hilbijartinên giştî yê Parlamena Almanyayê ye: ”Li Almanyayê milyonek Kurd dijîn. Piraniya Kurdên li Almanyayê, ji karker û malbatên wan ên ku ji Bakurê Kurdistanê hatine, pêk tê. Piştre ji her çar parçeyên Kurdistanê, Lubnan û Yekitiya Sovyeta berê jî Kurdên koçber li Almanya bi cih bûne. Civaka Kurd li Almanyayê, êdî mayînde ye. Lêbelê li civaka me xwedî gotar nîne. Ji ber ku hewldane me nîne. Di hilbijartinê de beredndamên me nîne û em bi siyasetê pirr kêm eleqedar dibin. Dema ku rewş weha be, vê demê wateya wê namîne. ”

**”Di siyaseta Alman de hebûna Kurdan kêm bûyê”**

Di demên dawîn de hebûna Kurdan di siyaseta Alman de kêm bûyê. Li gor Hêlîn sedemên vê yekê evin: ”Kurden ku di partîyên Alman de xebata siyasî dimeşînin, di dema ku tên hilbijartin tenê pirsgirêke Kurd vê mijûl dibin û ji bo civaka Alman xebatê jibîr dikin û ev jî, dibe sedem ku careke din neyên hilbijartin. Siyasetmedarên Kurd yên di nav siyaseta Alman de xebatê dimeşîne, divê ji alî civaka Alman û bi wateya taybetî yê de ji bo Kurdan xebatê bikin.”

Li Almanyayê Kurd weke “Kurd“ nayên ravekirin. Jê dipirsim: ” Li Almanyayê, li ser civaka Kurd xebatên zanyarî pir kêm in. Kurd wek civakên din ên koçber, di hin xebatên zanyarî de weke statîstîk derdikevin pêş. Lê ew di qeydan de weke Kurd na, weke welatiyê ku ji wî welatî hatine têne binavkirin. Sedema ku Kurd di belgeyen fermî de weke Kurd nayên naskirin, polîtîk e. Gelek zanist li ser Kurdan xebatê dikin. Lê ji ber ku ew xebata li ser Kurdan weke destdayîna karên navxweyî ya Tirkiyeyê dibînin, ev rewş derdikeve holê. Di rewşeke wiha de, yekcar konsolosên Tirk dikevin dewrê.”

Parlamentera Kurd Baba, weke siyasetmedareke Alman ya bi esil Kurd û siyasetmedareke jin, pir zahmetî dîtiyê: ” Berlîn li Ewrûpayê yek ji bajarên herî zêde ku koçber lê dijîn e. Di heman demê de bajarê herî zêde ku Kurd lê dijîn e. Helbet li vê derê di polîtîkayê de zehmetî hene. Ev zehmetî herî zêde ji Kurdbûn û jinbûna min pêk tê. Di serî de pirsgirêka jinên koçber, bi taybetî jî pirsgirêkên jinên Kurd û pirsgirêka Kurd re eleqedar dibim û heta ji destê min tê van pirsgirêkan dibim meclisa eyaletê. Ji bo ku pirsgirêka Kurd bi rêyên polîtîk çareser bibe û Almanya di çareseriya pirsgirêkê de alîkar bibe, di nava hewldanan de me. Partiya me ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê gelek xebat dike. Heta hatiye wê merheleyê ku partiya me di nava raya giştî ya Alman de wek partiya Kurd tê binavkirin.”

”Die Linke” ji bo ku pirsgirêka Kurd bi rêyên polîtîk bê çareserkirin di nava gelek hewldanan de ye. Baba, ev hewldanan jî wisa radigihîne: ”Bernameyeke tijî ya partiya me heye. Li gor vê bernameyê em hewldidin ku polîtîka fermî ya pirsgirêka Kurd a dewletê teşe bigre, ji bo ku pirsgirêka Kurd bi awayeke polîtîk bê çareserkirin bibe alîkar. Herwiha em hewldidin ku Almanyayê îkna bikin ku endamtiya Tirkiyeyê ya Yekitiya Ewrûpayê bi çareserkirina pirsgirêka Kurd pêk bê.”

Baba, di derheqe derengmayîna Kurdan a ji bo lobiyê wiha dibêje: ”Kurdên ku di dema salên 60’î de hatin Almanyayê, nedifikirîn ku wê li vir bi awayek mayînde bimînin. Piştî demekê problema întegrebûnê ya Kurdên ku li vir mane derket holê. Ji ber ku ev problem zêde bûn, Kurd jî ji bo ku xwe bidin qebûlkirin, eleqe nîşanî polîtîkayê dan. Ev eleqe dereng jî mabe ji bo avakirina lobiya Kurdan rê vekir. Lê digel vê eleqeyê jî xebatên lobiyê kêm in.”

**”Lobiya Kurd li Almanya tune”**

Baba, Ji bo ku lobiya Kurdan li Almanyayê xurt bibe, gelek xebat kiriye û dibêje: ”Saziyên Kurdan ên li welat, derheqê Kurdistanê de di nava kar de ne, dixebitin. Polîtîkaya civaka Kurdan li Almanyayê bi awayeke mayînde bimînin tune ye. Ev yek jî nahêle ku lobiya Kurdan bi pêş bikeve û xurt bibe. Helbet wê saziyên Kurd di derbarê polîtîkaya Kurdistanê de xwedî helwest bin. Lê divê bibînin ku ew li vir dijîn. Ger ev yek pêk bê, wê lobiya Kurdan bi pêş bikeve û Kurd derbarê polîtîkaya Almanyayê ya li hemberî Kurdan de roleke diyarker bilîzin. Tişteke din jî divê Kurdên li Almanyayê dijîn, girîngî bidin welatîbûna Almanyayê. Hewce ye bibin endamên partiyên alman. Ger Kurd vê yekê bikaribin pêk bînin, pêşiya lobiya Kurdan dê bi xwe vebe.”

Di demên dawîn de danûstandinên dewleta Alman bi Herama Kurdistanê vê pêve çûne. Baba, vê mijarê weha şîrove dike: ”Dewleta Alman, têkilîyên xwe bi Herema Kurdistan ve bo berjewendîyên xwe dimeşînê. Ev danûstandin, dû başbûna têkilîyên Tirkîyê û Herama Kurdîstanê çêbû. ”

”Vebûna Kurdî” ya ku di rojeva Li Tirkîyê ye de ye jî ji alî Hêlîn ve weha tê şîrovekirin: ”Dewleta Alman, vebûna Kurdî li Tirkîye yê ji nêz ve dişopîne. Divê ev pêşketin, wê ber ji Tirkîye re veke. Dewleta Alman, piştgiriya hewldanên Tirkîyeyê dike. Di vê mijarê de xebata partiya me heye. Her weha qedexeya PKK’ê ya li welat, zirarê dide hemû Kurdan. Bi vê qedexê tê xwestin ku Kurd bêne krîmînalîzekirin. Divê Almanya vê qedexê rake.”

# “Bazara mûzîka kurdî tuneye”



**M. Sebatlı**

Dema navê Brader tê gotin bi hêsanî hunermendekî rispî, xwediyê rûyekî fotojenîk, bi bejna xwe ya delal û dengê xwe yê dawûdî tê ber çavê mirovan. Lê ew tenê ne hozan e û tenê ne bi mûzîkê re mijûl e. Temenê wî 51 sal e. Sala 1975'an tembûrê girtiye destê xwe û heta îro bernedaye. Piştî salên 80'yî dest bi albuman kiriye û heta îro jiyana wî bi hunerê derbasbûye. Brader heta niha 11 album derxistine. Herwiha di perdaspî de û li ser dikê jî dilize. Lê meyla wî hertim li ser muzîkê ye û ew xwe di navbera muzika klasîk û ya nûjen de wek pirê dibîne. Wek ku bi navê tê naskirin, Hozan Brader niha amadekariya albumeke nû dike. Brader gazinda nebûna bazara mûzîka kurdî dike . Ew heta albumekî derdixin li gelek deriyan dixin.

*Şano, sînema, şêwekarî û mûzîk... Gelo dema hûn li derveyê muzîkê bi beşên din re mijûl dibin tu hesta kêmasiyê bi we re çênabe? Bi awayekî din, bi beşên din ve mijûlbûn hesteki çawa dide we?*

Ez bawer dikim ku hev temam dikin. Beşên ne ji hev dûr in. Tu beşeki jî yê din re nabe asteng. Mînak ez di fîlm de distirim. Wêneyên kreatîv çêdikim. Ev hemû bi hestên hunerê ve girêdayî ne û rayên hunera min xurt dikin.

*Hûn niha amadekariya albumeke nû dikin... Wê guhdarên we di vê albumê de çi bibînin?*

Rast e, az niha amadekariya albuma xwe ya 12. dikim. Eger pirsgirêk dernekevin serê salê wê amade bibe. Di albumê de gelek stranên min hene; du heb jî wan nûjen in.

*Wê navê wê çi be?*

Hîn ne diyar e lê ez texmîn dikim ku navê wê “Birînên min çend in” be. Bi vê navê stranek xwes tê de heye ku ez hêvî dikim wek “Şehîdê bê nav”, “Çemê Rheinê” bê guhdarkirin.

*We albuma xwe ya dawî li Stenbolê çapkir. Niha hûnê li kû çap bikin?*

Di vir de hunermendên Kurd gelek pirsgirêk dibînin. Ji bo ku em albumeke çap bikin ji bilî ked û mesrefê gelek wextê me jî diçe. Ji ber ku di hêla mûzîkê de bazara Kurd tuneye. Eger hebûya wê hunermendan jî wê kezenc bikira. Ey albûma xwe bi xwe derdixim, aranjeya wê ez bixwe dikim. Dema ez aranje nekim divê pere bidim yekê.

*Ewqas album derdikevin, tên firotan... 3 televizyonên mûzîkê yên kurdî hene. Gelo ev ji bo bazara muzîkê ne bes in?*

Na ne bes in. Rast e gelek hunermend hene û gelek berhem tên afirandin û herwiha gelek temaşevan û guhdar jî hene. Lê her tişt di gengêşiyê de dimeşe. Bazar bi hebûna dewleteki mimkûn e. Dewleta Kurdan tune, di şûna wî de hêzên siyasî hene. Her partiyek ji bo xwe bazarek avakiriye û di vê bazarê de tenê berhemên xwe diweşîne. Ev berhem divê li gor xêza wê bin.

*Em zûde ye we di calakiyên li dervê pêktên nabînin. Mînak di şevên ku li Ewrûpa tên lidarxistin. Lê belê em we li Bakur û Başûrê Kirdistanê dibînin...*

Rast e, ev 5 sal in ku ez na çime sevan û konseran. Sala par ji bo hilbijartina ez çûm welat. Li wir di komisyona hibijartinê de min cih girt. Li Siwêrek, Hilwan û Entebê beşdarî sê konseran bûm. Herwiha bi rayedarên DTP'ê re digeriyam û tevlî hemû çalakiyan bûm. Herwiha ez diçim herêma Kurdistanê jî.

*Navên gelek stranên we naveroka hunera we jî destnîşandikin. Mînak stranên wek Mêrxaso, Harunê Min, Ez Sehîdekî Bê Nav im, Me Hebû Welatek bêhna lehengiyê ji wan tê . Ji aliyê din, stranên evînî wek Nebû Yarê, Sorgul, Sevdasiza Min, Sûretvano. Hûn hunera xwe çawa binav dikin?*

Ez xwe di navbera hunera klasîk û ya nûjen de wek pire dibînim. Ne li diji hunera nûjen im, divê ew jî hebe û ciwanên me guhdar jî dikin. Lê divê bingeha me ew be. Ki dixwaze ci bes diafrînê bila biafrîne lê divê li ser vê bingehê bimeşe. Dema ku bingeh qels be, wê berhem jî bê reng bibe. Dibe ku bi kurdî be jî, lê her gotinên ku kurdî bin mirov nikare wan wek muzika kurdî bihesibîne.

*Wek em dizanin ji bilî karê muzîkê hûn bi beşên hunerê yên din re jî mijûl in...*

Belê; min di gelek fîlmên metrajdirêj û metrajkin de rol girtiye. Fîlmê pêşî di sala 1996'an de qediya û kete sinemayan. Beşdarî gelek festîvalan bû û 7 xelat girtin. Paşê ez di fîlmê Dengê Defê de listim; herwiha di rêzefîlmê binavê Kolanên Xeribiyê de jî rol girt.

*We çi cudahî di senaryo û derhêneriya Hollandiyan de dît?*

Di senaryoyê de gelek tişt bala min dikisandin. Min fahm kir ku jiyana gelê Kurd baş nasnakin. Jiber vê yekê di dema provayan de min gelek mudahale dikir û dixwest hin tiştan biguherînim.

*Xebatên we yê sînemayê didomin?*

Belê. Niha ez dîsa di fîlmeki Hollandî de cihdigrim. Ev fîlmê ku derhêneriya wî Adelheid Rossen dike li ser pirsgirêka kuştinên namûsê disekine. Di fîlm de sê jenerasyon hene; her jenerasyonekî bi awayekî li jiyanê dinêre. Her wiha bi gelek zimanan wek erebî, kurdî, tirkî û hollandî tê axaftin û ez jî wek kalê malbatê di sehneki de radibim û wek arya bi kurdî distirim.

*Gelo dema hûn bi kurdî distirin nayê wê wateyê ku tenê Kurd xwediyê kuştinên namûsê ne?*

Ez bawer nakim ku fîlm mesajekê wisa bide temaşevanan. Jiber ku kuştinê namûsê ne tenê karê Kurdan e. Ne tenê Ereb jî dikin, ne tenê Tirk jî. Ev pirsgireke navnetewî ye, lê bi çandê ve girêdayî ye. Zêdetir bi çanda çiyayî ve. Lê rastiyeke din heye ku di nava Kurdan de kuştinê namûsê hene û gelek in.

*Eleqeya Kurdan û medya kurdî ji çalakiyên we re çawa bû?*

Bajarê ku ez lê dijîm de eleqeya Kurdan ne xirab bû. Lê turneya me li gelek deveran dom kir. Heta New Yorkê, Stenbolê û Urdunê jî em çûn. Herçiqas min televizyonên Kurd agahdar kiribû jî, lê tenê du malperên Kurd, Diyarname û Avesta Kurd çalakiya me şopandin û li ser nivîsandin. Mentalîteya me jî bo hunerên li ser dikê ne baş e; tenê em şovan temaşe dikin.

*Niha çi proje di destê we de heye?*

Ji bo fîlmekî nû teklîf ji min re hat lê me hîn lihev nekiriye. Ez di demên xwe yê din de şêwekariyê dikim, ango tabloyan çêdikim.



# “Gendeliyê hemû Kurdistanê dagirtiye”

(Ji Rûpela 1)

*Dû hezar rapor û dosya gihiştin Dîwana Çavdêriya Darayî. Hûn gihane kuderê û we çi kiriye?*

Bersiva beşek ji wan hatiye dayin û beşek jî nehatine bersivdan. Lijneya me bi biryara Cîgirê Serokê Civata Weziran hatiye damezrandin û ez wek nûnerê wê serpereştiya karên lijneyê dikim. Ew dezgehên ku li idareya berê ya Parêzgeha Silêmaniyê bersiva raporên xwe nedane, emê serdana yek bi yek a wan bikin û me daxwaz ji wan kiriye ku di demeke diyarkirî de bersiva me bidin. Eger bersiva wan qenaet bi Dîwana Çavdêrî ya Darayî anî, tu pirsgirêkeke me namîne. Eger qenaet neanî, emê ji bo ku pirsgirêkan çareser bikin, bi wan re bicivin.

*Hûn gihiştin çi encamê?*

Eşkere bû ku di komek dezgehên idareya berê ya Silêmaniyê de gendelî heye. Bêguman ne tenê di idareya berê ya Silêmanî de, li Hewlêr û Dihokê jî heye, lê xuyaye çavdêriya darayî ya Silêmaniyê bi baweriya min idareyek pir çalak e û gelek cidî û bi hûrî kar dike û ti şaşî û xeletiyek ji derbas nabe û destpêşxerî kiriye.

*Gendelî zêde di kîjan dezgehan de heye?*

Ji encama lêkolînên ku tên kirin tê xuyakirin ku xemsarî û gendelî di hinek dezgehan de heye. Wek nimûne li cem Parêzgarê Silêmaniyê, li idareya elektrîkê û li idareya xanenişîn a Ranye û hinek cihên idareya perwerdeyê de. Yên ku şaşiyên wan biçûk in dosyayên wan ji bo dadgehê nayên şandin û mesele wê li cem lijneyan werin çareserkirin.

*Hemû rapor hatine şopandin?*

Nexêr, beşek mane. Yên ku heta niha ji dadgehê re hatine şandin beşekî sereke yên Dîwana Parêzgeha Silêmaniyê ne.



(Wêne: Rûdaw)

*Heta niha we doz li dijî kê vekiriye?*

Biryara girtina Parêzgarê Silêmanî û qaymaqamê Helebçeyê derketiye. Di idareya xanenişîn a Ranyê de 191 milyon dinar kêmasî heye û pere nexuyaye. Jimêryarê wê idareyê ji reviyaye û dosya jî wê ji dadgehê re were şandin.

*Gumana li ser gendeliya Parêzgarê Silêmanî çine?*

Sê dosya hene. Yekem: Pereyê hişkesaliyê ye û niha di wê derbarê de li Dadgeha Lêkolîna Silêmanî de lêpirsîn dest pê kiriye, hin kes hatine girtin û biryara girtina hinek karmendan jî derketiye, wek mînak ya parêzgar. Duyem: Ji bo xercên Dîwana Parêzgeha Silêmanî lijneyeke lêkolînê hatiye damezrandin û heta niha encamên dawî yên lêkolînan nehatiye eşkere kirin û ji ber wê ji em nikarin bidin dadgehê. Budceya sala 2007'an winda ye û ne xuya ye, heta kaxizek ji xuya nake. Sêyem: Dosya çend girêbestan heye ku bi rêya neqanûnî hatine kirin.

*Hin dezgehên ragihandinê dibêjin ku pereyên Parêzgarê Silêmaniyê ji bo Dezgeha Wişe hatine xerckirin, ev rast e?*

Ew mijar ne diyar e û di bin lêkolînê de ye.

*Tê gotin ku lêkolîn zêde di derbarê Parêzgarê Silêmaniyê jî ber piştgiriya wî ya ji bo aligirê Lista Goran e. Ev îddia rast e?*

Na, tu armanceke siyasî li pişt wê lêkolînê tune. Gendeliya Parêzgarê Silêmaniyê zûtir teqiya û hat eşkerekirin û zûtir kete ber lêkolînê.

*Tê bahskirin ku ji ber gendeliyê wê çendîn wezîr û berpirsên bilind werin dadgehkirin, gelo rast e?*

Wek Wezareta Dadê, dezgehek me bi navê Dezgeha Daxwazkarê Giştî heye. Berî sê mehan ji bo şopandin û çalakkirina pêvajoyê min lijneyekî bilind ku ji pênc dadweran pêk hatiye, ava kir. Karê wan tenê şopandina dezgehên hikûmetê û idare û samanên netewî ye. Kesên ku mijûlî kar in, xelkê xwedî şiyan in.

*Agahiyên wiha hene ku wê lijneyê çend wezîr û berpirsên bilind ji ber sûcdarkirina bi gendeliyê radestî dadgehê kiribin, gelo rast e?*

Lijne niha bi amedekirina gilinameyan di derbarê wezaretan de mijûl e. Rast e, heta niha lijneyê şikayetname li ser cihgirê Serokwezîrê berê yê Hikûmeta Kurdistanê, Wezîrê Elektrîkê û Wezîrê Werziş û Ciwanan amade kiriye.

*Yanî wê Omer Fetah û dû wezîrên din radestî dadgehên werin kirin?*

Dozgerê Giştî name nivîsiye ku divê ew jî dadgehê re werin şandin. Li ser bingeha wan nûçe û zanyariyên ku li ber dest in, Daxwazkarê Giştî xwestiye ku ew werin dadgehkirin. Çi dibe û çi nabe, dadgeh wê piştre biryara dawî bide.

*Ew berpirs bi sûcdarkirina bi gendeliyê radestî dadgehê hatine kirin?*

Dosya hemûyan di derbarê samana giştî deye û di derbarê pereyên ku di wan wezaretan de hebûye.

*Hûn bawer in ku ev doz bighijê ti encamê?*

Dozgerê Giştî ew doz vekiriye û dadgeh biryarê dide.

*Mebesta min ew e, gelo dadgeh gihaye wê astê ku keseki wek Omer Fetah, ku endamê Polîtbûroya YNK'ê ye, dadgeh bike û eger gendeliya wî bê ispatkirin, ceza bike?*

Eger ew dadgeh û dezgeh wek niha bêtirs wan dosyayan bişopînin, ez bawer im doz dikare bigihe encamê. Lê eger sibê aliyê siyasî destwerdanê bike û nehêlin ew sazî û dezgeh karên xwe bimeşînin, ew tişteki cuda ye.

*Çima Lijneya Çavdêriya Darayî zêde li Silêmaniyê kar dike û li Hewlêrê tune?*

Gendeliyê hemû Kurdistanê dagirtiye. Ji jor ber bi jêr dest pê kiriye, ne jî xwarê. Dîwana Çavdêriya Darayî geleki li ser karê xwe rijd e û li hemû dezgehên idareya berê ya Silêmaniyê lêgerînê dikin û bi eşkere raporên xwe dinivisin, lê li Hewlêrê tiştekî wiha tune. Ez ne bawer im ku Dîwana Çavdêriya Darayî ya Hewlêrê wek a Silêmaniyê çalak be. Lê ew dezgeha Dozgerê Giştî ku niha karê xwe daye destpêkirin, beşa zêde ya gilinameyên ku hene li ser wan berpirsan in ku ser bi PDK'ê ne. Ew şikayetnameyên ku hatine kirin ji niha li dadgeha Hewlêrê ne.

## "Dema yekîtiya Kurdan e"


(Wêne: Diha)

*(Ji Rûpela 1)*

Şanda DTP'ê roja duyem derbasî Hewlêrê bû û bi Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî re rûnişt. Hevdîtin seatekî ajot. Piştî hevdîtinê Barzanî şandê bi rê kir û di derbarê hevdîtinê de daxuyanî nehat dayîn.

**Kerkûkî, gotina Baydemir dubare kir**

Ahmet Türk û şanda DTP'ê roja înê serdana Serokê Parlamentoya Kurdistanê Kemal Kerkûkî kirin. Heyata DTP'ê ji ber hilbijatina wî ya serokatiya parlamenê Kerkûkî pîroz kir û daxuyand ku rêveberiya Kurd di warê demokrasiyê de pêşketine giring bi dest xistiye. Türk wiha got: "Gelên Rojhilata Navîn ji Kurdan ji berê xwe dane demokrasiyê. Divê Tirkiye jî pirsgirêkên xwe bi rêyên demokrasiyê çareser bike. Lazim e di nav Kurdan de jî yekitiyek hebe. Dem dema diyalogê ye. Ne dema têkoşîna çekdarî ye. Em dixwazin pirsgirêka Kurd li Tirkiyeyê bi demokrasiyê çareser bikin. Em dixwazin li ser bingeha biratiya gelan çareseriyekê peyda bikin. Zordariyên li ser Kurdan wê bi demokrasiyê çareser bibin. Çima di nav gelên Rojhilata Navîn de jî yekîtiyek wek ya Yekîtiya Ewrûpayê çênebe? Li 4 perçeyên Kurdistanê, Kurd di nav zahmetiyên mezin de ne. Ev zordarî divê rabin û rêya vê jî demokrasî ye."

Kemal Kerkûkî jî diyar kir ku lazim e Kurd pirsgirêkên xwe bi demokrasiyê çareser bikin nû wiha domand: "Em jî mirov in. Hin caran ji bo parastinê me şerî li şerê çekdarî daye. Lê lazim e herkes êdî bi diyalogê pirsgirêkan çareser bike." Kerkûkî balkişand ser gotina Baydemir ya di 1'ê îlonê de bikar anî ya wek, "Bila guleya ku li leşkeran dikeve li min bikeve. Lazim e rewşenbirên Tirk jî bikaribin bêjin guleya li şervanan dikeve bila li min bikeve. Lazim e Tirk jî êdî fikra xwe biguherin. Lazim e zordarî bi demokrasiyê bi awayek samîmî ji holê bên rakirin. Divê ev birîn bi tevahî bê girtin. Ku tenê birîn bê peçavtin wê cardin edav bigire. Li Parlementoya Kurdistanê demokrasî heye. Wekîlek Tirkmen li Parlementoya Kurdistanê tirkî axivî, Serokê Parlementoya Kurdistanê Adnan Muftî yê demê axaftina wî wergerand. Cihê ku demokrasiya heqîqî hebe herkes li wir xwe azad ifade dike." Piştî hevdîtinê Türk, pirtûkek dîroka Amedê diyarî Kerkûkî kir.

Şanda DTP'ê herî dawî bi Serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Dr. Behrem Salih û Nêçîrvan Barzanî re civiya. Salih û Barzanî piştî civînê bi kêfxweşî şandê bi rê kirin. Şand di 19'ê îlonê de bir balafirê vegeriya Stenbolê.

Li aliyê din li gor angaşta DIHA'yê heyeta DTP'ê û rayedarên Herêma Kurdistanê li ser lidarxistina kongreya neteweyî lihevkirine. Li gor nûçeya ajansê wê kongreya neteweyî di meha adara 2010'an de bê lidarxistin û ji bo vê DTP wê di serê cotmehê de heyeteke bişîne Herêma Kurdistanê. Ev angaşt heta niha ji alî rayedarên DTP'ê û rayedarên Herêma Kurdistanê nehatiye piştrastkirin.

**"Ji bo çareseriyê herkes hişyar e"**

Ji Şanda DTP'ê Emine Ayna û Sebahat Tuncel di derbarê serdana xwe ya li Herêma Kurdistanê de ji Rudawê re wiha ragihandin:

**Emine Ayna (Hevseroka DTP'ê):** Ev serdana me ya dawî bi me re hêviyekê mezin çêkir; bi kêfxweşî derbas bû. Ez dikarim bêjim ku wê encamên xwe bide. Beriya her tiştî nêzîkayiya hevbeş di navbera me de çêbû. Di gelek mijaran de em axifîn û me dît ku fikrên hevbeş dikevin pêş. Ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd a li Tirkiyeyê, herkes hişyar e. Herwiha çareseriya pirsgirêkê bi riya demokrasiyê ji bo berjewendiyên her alî ye. Rayedarên Herêma Kurdistanê hertim bi Tirkiyeyê re di nav têkiliyan de ne, em van têkiliyan baş dinirxînin. Dikarin bi riya van têkiliyan Hikûmeta AKP'ê ji bo çareserkirina pirsgirêkê motîve bikin. Herwiha ji bo rawestandina operasyonan dikarin hikûmetê îkna bikin. Di nava Kurdan de tevgera hevbeş gelek giring e. Bi vî awayî Kurd û hemû gelên Rojhilata Navîn dikarin pirsgirêkên xwe bi diyalogê çareser bikin. Mijara kongreya neteweyî jî wek serdana berê ku wan pêşniyaz kiribûn, disa hat axaftin, lê di axaftinan de mijarên wek li kû, kengê û çawa nehatin ziman.

**Sebahat Tuncel (Parlamena Stenbolê):** Hevdîtinên me di atmosfereke germ de derbas bûn. Me birêz Barzanî, Kerkûkî û Behrem Salih ji ber hilbijartinan û postên wan ê nû pîroz kirin. Herwiha di derbarê çareseriya pirsgirêka Kurd de me danûstandina fikran kir. Ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd a li Bakur em hêvî dikin ku rayedarên Herêma Kurdistanê karibin welwestên xwe bêhtir xurt bikin. Firseteke mezin ketiye destê Kurdan û divê ji bo berjewendiyên xwe vê firsetê baş bikarbînin. Me herdu aliyan destnişan kir ku çareserî ne bi mafên kesayetiyê tê, lê bi mafên kolektîf tê. Pêwîstiya yekîtiya Kurdan jî di axaftinan de hat holê û em bawer dikin ku ji herdemê zêdetir niha, divê Kurd danûstandinên xwe bi hev re xurt bikin.

## CDU piştgiriya Kurdan dixwaze

**Köln (Rûdaw)** – Nûnerên partiyên Alman di Roja Çanda Navnetewî, ya Berlinê de bi Kurdan re hatin cem hev. Berbijêrê CDU Dr. Christian Burholt tevlî vê çalakiyê bû û daxuyakirin ku partiya wan dostê koçberan e, ne li dijî koçebran e û ew jî bo vê yekê di vê çalekiyê de cih girtiye. Burholt di daxuyaniyeke bo Rûdawê de wiha got: "Nêrîn û nêzikbûna biyaniyan li hemberî partiya me ne baş in û ez jî bo hilweşandin û guherina van dîtinan hatime vir. Ya rastî, biyanî wê hertim li vir bimînin û divê partiya me bi zanebûnek wiha tevbigere. Ji bo integrebûnek serkeftî, bêgoman partiya me jî nikare koçberan nebîne. Em dixwazin di sêrî de hemû biyanî û Kurd jî di nav de, di bin banê partiya me de bicivin û siyasetek çalak bimeşînin. Ji bo ku koçber di civaka Alman de çand û pêdiviyên nasnameya xwe bikaribin bijîn, partiya me dixwaze siyasetek bi vî rengî derbasî jiyanê bike."

Burholt da zanîn ku ji bo îmaja Kurdan di nav civaka Alman de bê guherin, divê Kurd bibin endamê CDU û ji bo vê yekê çalak bixebitin û berdewam kir: "CDU ne li dijî biyaniyan e. Biyanî beşek jî vê civakê ne. Ji bo ku ew çanda xwe di vê civakê de bikaribin bijîn, CDU wê alîkar be."

Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Almanyayê Dilşad Barzanî roja 18'ê îlonê li bajarê Almanya Castrop-Rauxelê civînek bi Kurdên herêmê re lidarxist. Civîn ji bo piştgiriya siyasetmedarê Alman yê berendamê CDU Philipp Mißfelder hat lidarxistin. Dilşad Barzanî di axaftina xwe de Mißfelder wek dostê Kurdan da nasandin û ji Kurdan xwest ku dengê xwe di hilbijartinan de bidin wî. Mißfelder jî bahsa dostaniya xwe û Kurdan kir û bangî Tirkiye kir ku mafê Kurdan binasê.

Di civîne de ji bilî Mîr Tahsin Begê serokê Ezdiyên cîhanê jî amade bû.

## Die Linke parazvanê Kurdan e!

**Berlin (Rûdaw)** - Berbijêrê Die Linke Klaus Lederer ji li Berlinê ji Rûdawê re diyar kir ku koçber divê di civakê de bibin xwediyê gotinê û partiya wan jî hertim alîkariya vê yekê dike. Lederer di derbarê helwesta partiyan wan ya Kurdan de wiha got: "Li Almanyayê partiya ku herî zêde mafê biyaniyan diparêze partiya me ye. Biyanî perçeyek jî civaka Almanyayê ne. Ev yek jî divê wek dewlemendiyek vê civakê bê dîtin. Ji ber vê yekê partiya me herdem piştgirî dide çalakiyên bi vî rengî yên çandî. Kurd divê di civakê de bi nasnameya xwe bên naskirin û ji bo pêşvebirina çanda wan partiya me hertim siyasetek bi vî awayî dimeşîne. Di hilbijartinên federal de, di serî de Kurd û dûre jî hemû biyanî, em dixwazin ku ew dengên xwe bidin me."

## FDP: Reform ji bo Tirkiyê kilîta YE'yê ye

**Nasredin Akyol**

**Köln (Rûdaw)** – Partiya Liberalên Demokrat (FDP) yek ji pênc partiyên serekê yê Almanyayê ye û partiyeki liberal e. Li gor rapirsiyan FDP wê di bilbijartinên 27'ê vê mehê ji sedî 12 heta 15'ê dengan bistîne û ihtimal mezin e ku bi CDU re hevpeymanê pêk bîne. Wek kevneşopiyek siyaseta Almanyayê di hevpeymaniyên di navbera CDU û FDP de Wezareta Derve ya Almanyayê dibe para FDP. Li ser navê FDP Dr. Werner Hoyer pirsên Rûdawê li ser siyaseta FDP ya li hemberî pirsa Kurdî li Tirkiyê, helwesta wan li hember Herêma Kurdistanê û di derbarê qedexeya PKK'ê li Almanyayê û çend pirsên din bersivandin. Eger wezareta derve di vê dewra nû de bibe para FDP, ihtimal mezin e ku kevnewezîrê dewletê, cigirê serokê koma FDP di parlamenê de û berdevkê FDP di pirsên siyaseta derve de Werner Hoyer bibe şêwirmendê Wezîrê Derve yê Almanyayê.

***Eger wezîrê derve yê nû ji FDP bê, wê çi guherin di siyaseta derve ya Almanyayê de pêk bê?***

FDP di siyaseta xwe ya derve de bi idealên rojavayî û cîhana modern a ku ji guherinên dema me re dibe bersiv, girêdayî ye. Em di globalîzmê de ji metirsiyekê bêtir, derfetekê ji bo pêşveçûna cîhanî dibînin. Ev cûdabûna bingehîn e di navbera me û partiyên din de, ku ew an li dijî globalîzmê ne, anjî bi awayekî wekî dema şerê sar li globalizmê dinêrin. Siyaseta lîberal siyaseteke destê dirêjkirî û ya hevkariyê ye. Ji ber vê yekê dîsa dem hatiye ku em wekî Partiya Liberal siyaseta derve ya welatê xwe birêve bibin.

***Û di derbarê Îraqê de?***

Herçiqasî Almanya ji sala 2003'an ve di warê jinûveavakirinê, demokratîkbûnê û pêşketina aboriyê de alîkariya Îraqê dike jî, lê ev têr nake. Niha pêwist e bi hevkariya welatên din, di jinûveavakirina wî welatî de alîkarî bê kirin. Almanya dilxwazê wê yekê ye ku li Îraqê û li herêmê aramî bi cih bibe.

***FDP piştgiriya endametiya Tirkiye di YE'yê de dike?***

Biryara endamtiya Tirkiyeyê di Yekîtiya Ewrûpayê (YE) de di van salên pêş de ne di rojevê deye. Herçiqas Tirkiyê di hinek waran de çend gavên giring avêtin jî, lê di gelek warên din de kêmasiyên mezin di bicihkirina standartên YE'yê (Krîterên Kopenhagenê) de hene, ku divên beriya endametiyê bên bicihkirin. Lê ew yek jî xeletiyeki mezin e, eger em perspektîfa endambûna YE'yê ji Tirkiyê bistînin û pêşî li reforman li wî welatî bigrin. Mifteyê endametiya Tirkiyê ji bo YE'yê bicihanîna reforma ye û ya din jî hêza YE'yê ku karibê endamên nû hembêz bike.

***Pozîsyona FDP di derbarê pirsa Kurdî li Tirkiyeyê çiye?***

Di pirsa Kurdî li Tirkiyeyê de ji herdû aliyan ve hewldan pêwistin, ji bo ku jiyanek aştiyane û demdirêj mimkun bê. Hem Tirkan û hem jî Kurdan di paşerojê de pirêcaran çareserî di bikaranîna şidetê û hevdû sûcdarkirinan de dîtin. Ji aliyekî ve FDP di pirsa Kurdî li Tirkiyê de hinek gavên erênî dibîne, lê dîsa jî em pêwîstiya bi gelek gavên din jî dibînin û em vê yekê hem di danûstandinên di asta Ewrûpayê û hem jî di pêwendiyên dûalî de tînin ziman.

***Almanyayê beriya demekê li Kurdistana Îraqê nûnertiya xwe vekir. Almanya wê bi wezîrekî dervê yê liberal çi siyasetê li Îraqê bimeşîne?***

Herçiqas rewşa hûmaniter li beşekî mezin ji Îraqê hêjî di metirsiyê de ye, lê parastina kêmnetewan û komên olî xwedî giringiyek mezin e. Lihevhatina neteweyî jî bo ewlekariyek demdirêj li Îraqê şert e. Çiqasî pirsgirêkên cuda di navbera komên neteweyî û olî û siyasî li Îraqê hebin jî, lê hemfikriyek jî bo yekîtiya neteweyî li wî welatî heye. Referandûmê li ser pêşeroja herêmên ku nakokî li ser wan heye, bi taybetî jî girêdana wan bi herêmên taybet, di Destûra Îraqê de hatiye destnîşankirin. Armanca van xalên destûrî reformên navxweyî û yên avahiya Komara Îraqê ne, ew yekparebûna xaka Îraqê nakin niqaşê. Ku pêşveçûn bi hêza navxweyî jî mimkun e, pêşveçûnên erênî li Herêma Kurdistana Îraqê nîşan didin. Hinjî bihêzkirina herêmê di çarçoveya federalîzma neteweyî wek riyekî erênî jî bo avakirina giravên ewlekariyê û bipêşketina aborî dixuyên. Ji bo bidestxistina van armancan, kesên berpirsyar serok û rêvebirên olî yên Îraqî ne, lê siyaseta derve ya Almanya dikarê bi şêwirmendî û alîkariyê piştgiriya vê pêvajoyê bike.

***Qedexeya PKK'ê li Almanyayê ji sala 1993'an ve çi bi dest xist?***

Heta ku Partiya Karkerên Kurdistanê bi zora çekan û êrişên ser bingehên sivîl, hikûmî û leşkerî jiyana mirovan dike metirsiyê, ti alternatîfa qedexekirina wê tune. Saziya Parastina Destûra Almanyayê (Verfassungsschutz) di wê baweriyê de ye ku niha jî gelek kesên ji derdorên PKK ji bo kiryarên radîkal dikarin werin mobilîze kirin. Girtina van aghiyên Verfassungsschutz li ber çavan, divê qedexeya PKK û rêxistinên girêdayî wê bidome. Tenê bi van tedbîran dikare rê li pêş bûyerên şidetê yên nû – wekî çalakiyên şewitandina dikanan li Almanyayê ku di sala 1993'an bûn sedema qedexekirina PKK'ê – bê girtin û rêxistin bê lawaz kirin.

## "Divê Kurdên Almanya berê xwe bidin SPD'ê"

**İsmet Siverekli**

**Berlin (Rûdaw)** - Parlamenterê SPD Swen Schulz ku di hilbijartinên pêş yên Almanyayê de cardin ji Berlinê berbijêrê SPD'ê ye. Li herêma Schulz ya hilbijartinê gelek Kurdên koçber dijîn. Ew bang li Kurdan dike ku ew berê xwe bibin SPD'ê.

***Siyaseta SPD ya di derbarê koçberî û integrasyonê wê çawa be?***

Divê Almanya ji bo koçberî û integrasyonê civakeke vekirî be. Civakeke vekirî bi tolerans û qebûlkirina koçberan mimkun e. Partiya me ji bo afirandina siyasetek weha di nav xebatê de yê. Ji aliyê integrebûna civakê ve pirsgirêkên koçberan hene. Ev pirsgirêk dikarin bi rêya perwerdeyê bên çareserkitin, ne bi vederkirina van kesan. Koçber di civaka me de heta iro wek mêvan hatin dîtin, ne di nav me de, li kêleka me jiyan. Em bi pirsgirêkên wan re eleqeder nebûn. Pirsgirêkên wan pirsgirêkên me ne û divê em çareser bikin.

***Çima divê koçber denge xwe bidin partiya we?***

Ji bo ku koçber di civaka me de jiyanek baş bijîn û Almanya wekî welatê xwe bibînin, partiya me di nav karûbar da ye. Ji bo vê partiya me li hember hemû astengiyan di sala 2005'an de yasaya koçberiyê da derxistin. Bi vê yasayê li Almanyayê koçber dibin xwediyê herî zêde derfetan. Ji wan re rêya integrasyonê vedibe. Dîsa partiya me yasaya hemwelatiyê guhert û yasaya du-hemwelatiyê derxist.

***Kurd li Almanya di qada fermî da wekî Tirk, Ereb û Faris tên nasandin. Li gor we çima Almanya Kurdan wek Kurd nas nake?***

Ji ber ku Kurd ne xwedî dewleteke serbixwe ne, ew wek Tirk, Ereb û Faris tên qebulkirin. Di siyaseta navnetewî de ev wiha tê qebûlkirin û li Almanyayê jî wiha ye. Sedemen vê yên dîrokî û berjewendî hene. Li gor min ev nêrîneke şaş e. Mirov xwe çawa dibîne, divê wiha bê qebûlkirin. Ez hêvîdarim ku Kurd di pêşerojê de wek Kurd werin qebulkirin û di nav civaka Alman de bi nasnameya xwe xebatên xwe bimeşînin.

***Gelo nasnekirina nasnameya Kurdan li ber integrasyonê astengî çênake?***

Gelên ku bi nasnameyên xwe nayên naskirin, pirsgirêkên wan zêde ne. Dem dem li ber integrebûne astengî çêdike. Wek min got, tunebûna dewleta Kurd û berjewendiyên dewletan, naskirina Kurdan dixê zorê. Koçberên Kurd divê li Almanyayê mafên xwe yên çandî bikarbînin û ji bo vê yekê alîkarî bê kirin. Îro em vê yekê di pratîkê de nabînin, ev yek kêmasiyeke mezin e. Wîndabûna zimanê kurdî windabûna lateke mirovahiyê ye. Divê ev ziman bijî û qedexeyên li ser ziman bên rakirin.

***Tirkên di nava partiya we de xebatê dimeşînin rê li ber berbijêrên Kurd digirin. Hûn vê rewşê çawa dinirxînin?***

Di nave partiya me de ditinek wiha tune. Dibe ku Tirkên ku di nava partiya me de çalak in xwediyê ditinek wiha bin. Di nave partiya me de hejmara Tirkan li gor ya Kurdan gelekî zêdeyê. Ji bo vê yekê di nave partiya me de Tirk ji Kurdan bêtir wek berbijêr tên hilbijartin. Kurd jî bila wek koçberên din bibin endamê SPD'ê, xebatên xwe bimeşînin û çalak bin, da ku bên bijartin. Mixabin Kurd eleqeyeke mezin nîşanî partiya me nadin. Ev yek kêmasiya Kurdan bi xwe ye.

***Li gor we şansê SPD'ê di hilbijartinên 27'ê îlonê de ji bo bidestxistina desthilatê çiqas e?***

Partiya me ji bo ku li Almanyayê têgihiştina dewletek sosyal bê rûniştandin, partiya herî zêde xebatê dimeşîne ye. Kontrola dewletê divê li ser aboriyê hebe. Herweha divê hewl bê dayîn ku sendîka di cîhana kar de xurtir bikaribin cih bigrin. SPD giringiyê dide pirsgirêken malbatî, perwerdeyî û kontrolkirina sîstema bankeyan. Û em ji bo xebatkaran diyarkirina hindiktirîn heqdest dixwazin. Ev xebatên partiya me wê di hilbijartinan de ji me re enacameke baş û serkeftî bîne.

### 250 hezar zarokên leşker:

# Mexdûr û qatil



**Serwîsa Cîhanê** – Bi dehhezaran zarok li seranserê cîhanê ji aliyê artêş û rêxistinên çekdar ve di pevçûnan de wek şervan tên bikaranîn. Temenê van zarokan di bin 16 salîre ne. Li gor texmînên Netewên Yekbûyî (NY) niha herî kêm 250 hezar zarok li welatên Afrîka û başûr-rojhilatê Asyayê wek leşker tên bilaranîn.

Ev zarok niha di 20 şer û pevçûnên çekdarî de tên bikaranîn. Gelek ji wan zarokan ji aliyê rêxistnan ve tên revandin û mecbûrî şer tên kirin, lê gelekên wan ji ber sedemên din jî dibin şervan: Kuştina xizmên wan û daxwaza tolhildanê, bêkarî, tunebûna perspektîfan û şiddeta nav malbatê de. Piraniya wan zarokan ne di artêşên fermî, lê di kom û rêxistinên serhildêr de tên bikaranîn. Lê di nav artêşan de jî zarok tên xebitandin. Li gor raporta 2008'an ya li ser leşkerên zarok "Weltreport Kindersoldaten 2008" ku ji aliyê saziya Almanî "Deutsches Bündnis Kindersoldaten" tê amadekirin, çend hikûmetên ku di navbera nîsana 2004'an û cotmeha 2007'an de, zarok ji bo şer û karên din yên wek sîxuriyê bikaranîn ev in: Komara Demokratîk Kongo, Îsraîl, Yemen, Bîrma, Sûdan, Çad û Ûganda.

Leşkerên zarok ji bo hemû karan tên bikaranîn, mîna veguhestina agahiyan, sîxurî, bicihkirina bombeyan û karên din. Ji ber ku zarok bi awayekî hêsantir dikarin ji bo kuştinê bên perwerde kirin, gelek rêxistin çekdarî şervanên xwe yên nû bi taybeta ji nava zarokan kom dikin. Di nava leşkerên zarok de gelek keçik jî hene û ew jî rastî gelek tûndûtijina tên, di nava wan de tecawiz û xizmeta leşkerên ku xwe di şer de "îspat" kirine. Zarok di van şeran de ne tenê mexdûr in, ew dibin qatil jî. Gelek caran ew di dema perwerdeyê de bi armanca "fêrbûna" şerkirinê û têgihiştina wêrekiyê mecbûrî kuştina xizm û hevalên wan tên kirin. Gelekên wan zarokên ku ji nava şer rizgar dibin, temamê jiyane xwe de bi pirsgirêkên fîzîkî û psîkolojîk re rûburû dimîn in.

Li gor xala 38'an a Peymana Mafên Zarokan ku di 20'ê mijdara 1989'an de ji aliyê Civata Giştî ya Netewên Yekbûyî hatiye qebûlkirin, "her zarokek xwedî mafê parastina ji kiryarên şidetê ye". Piraniya welatên cîhanê ev lihevhatin qebûl kirine û di parlamenê xwe de jî erê kirine. Ev xal di 25'ê gulana 2000'an de bi pêvekê hate berfireh kirin û ev pêvek jî di 12'ê sibata 2002'an de ket meryetê. Di vê pêvekê de li hemû hikûmet û rêxistinên çekdarî ku konvensyon qebûl kirine tê qedexe kirin ku zarok temenê wan li jêrî 18 salan de, ji bo şerkirinê bikarbînin. Heta niha zêdetirî 100 welatî ev konvensyon erê kirinê, lê dîsa jî zarok li çendîn welatên Afrîka wekî Ûganda, Lîberiya, Komara Kongo, Sûdan, Rûanda û yên Asyayê wekî Bîrma, Afxanîstan, Filipîn û Srî Lanka di pevçûnên çekdarî de tên bikaranîn.

Çirûskek di pêşlêgirtina van kiryaran de "Dadgeha Navnetewî ya Şopandina Tawanan" (IStGh) li Den Haag ê ye. Yekem û tenê dadgeha ku qirkirina gelan, tewanên şer û kiryarên li dijî mirovantiyê dişopîne û di sala 2002'an de hate damezrandin, ji meha çile ve di doza xwe ya yekê de bi darezandina kevnegeneralê Yekîtiya Niştimanperwerên Kongoyî (UPC) Thomas Lubanga mijûle. Lubanga ku yek ji kesên sereke ye di şerê di navbera herdû gelên Hema û Lendû li bakur-rojhilatê Kongoyê, bi wê yekê tê sûcdarkirin ku bi hezaran zarok mecbûrî şer û kuştinê kirine. Herçiqas darezandina Lubanga wek gavekî erênî tê nirxandin jî, Lubanga ne ji ber kuştina bêhejmar ja Kongoliyan ket fokûsa dadweriya navnetewî, lê ji ber ku ew bi kuştina çendîn leşkerên hêza aştiyê yê NY'yî hat tewanbar kirin. Serkeftina vê dadgehê bi piştgiriya hikûmetan girêdayî ye, lê hîn jî yek ji bihêztirîn welatê cîhanê peymana damezrandina vê dadgehê mohr nekiriye, ew jî Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) ne. Herçiqas Kevneserokê DYA'yê Bill Clinton peymana damezrandina vê dadgehê destnîşan kir jî, lê George W. Bush ê ku piştî Bill Clinton hat ser desthilatdariyê ti gavên erêkirina vê peymanê di Kongresa DYA'yê de neavêtin . Tê hêvîkirin ku serokê nû Barack Obama gavên erênî bavêje.

# Mamê Sam û Ejderha poşan li hev didin

**Serwîsa Cîhanê** – Rikberiya aborî ya navbera Dewletên Yekbûyî yên Amerikayê (DYA) û Çînê herku diçe mezintir dibe. Bi îddiaya parastina pişesaziya xwe DYA'yê gumrika ser tekelên seyareyan çend qat bilintir kir. Biryara zêdekirina rêjeya gumrikê ji aliyê Çînê bi tundî hat şermezarkirin û tê gotin ku eger biryar di 26'ê îlonê de bikeve rojevê, wê li Çînê 100 hezar karker karê xwe winda bikin û sektora tekelên seyerayan 1 milyar Dolar bixisire. Li gor Pêkînê ev gavên DYA'yê şertên Saziya Bazirganiyê ya Cîhanê (WTO) binpê dike. Çînê li dijî biryara DYA'yê li cem WTO'yê bi fermî nerazîbûna xwe nîşan da.





Serokê DYA'yê Barack Obama hefteya borî biryara gumrika li ser tekelên Çînî erê kiribû. Li gor biryarê di sala yekê de wê gumrik ji sedî 35, di sala dûyem de ji sedî 30 û di ya sêyem de jî ji sedi 25 be. Komisyonekî bazirganiyê ya Amerîkî rêjeyekî bilindtir pêşniyar kiribû. Li gor komisyonê bazara netewî ji ber zêdebûna tekelên Çînê bi tengasiyên mezin rûbirû ye. Sendîkayên karkeran li DYA'yê jî sedema avêtina bi hezaran karker ji karê wan, wek tekelên erzan ên Çînî dibîne. Sendîkayên Amerîkî daxuyandin ku hejmara tekelên ji Çînê di pênc salên borî de sê qat zêde bûye û ji ber vê yekê 5 hezar karkerên Amerîkî di vê sektorê de karê xwe winda kirine. Li gor agahiyên ji çapemeniya Amerîkî niha ji sedî 17 tekelên ku li DYA'yê tên bikaranîn ji Çîne ne.

Rayedarên Amerîkî daxuyandin ku ev biryara wan bi şertên WTO'yê re guncavin û Çîn bi wê yekê sûcdar dikin ku bazara DYA'yê bi tekelen erzan dagir dike. Qanûnek DYA'yê ya sala 2000'î rê li pêş gumrikek bi vî rengî vedikê. Di wê qanûnê de hatiye gotin ku dema bilindbûna malê Çînê sektorekê li DYA'yê bike jêr tengasiyê, rêjeya gumrika di wê sektorê de dikarê bê guhertin. Çînê jî di dema danûstandinên ligel WTO'yê li ser endametiya xwe ev qanûna ku heta niha nehatiye bikaranîn, qebûl kiribû.

Berdevkeke Hikûmeta Çînî dilgiraniya xwe li hemberî vê helwesta DYA'yê anî ziman û Hikûmeta Obama bi binpêkirinên şertên WTO û xirabkaranîna aletên WTO'yê di pirsgirêkên bazirganiyê de tewanbar kir. Li Çînê ew tirs heye ku biryara gumrika li ser tekelan dikare ji bo berhemên din jî wekî pola, alûmînyûm û berhemên kîmyawî bê girtin. Wekî reaksyona li dijî van gavên DYA'yê Hikûmeta Çînê dest bi lêkolînên di derbarê gumrika li ser malê DYA'yê û perçeyên seyareyan ji wî welatî kir. Wezîrê Bazirganiyê yê Çînê nexwest vê helwesta xwe bi tolhilandinê bi nav bike û got ku ew li ser gazincên şîrketên Çînî li dijî şîrketên Amerîkî dikevin nav lêkolînan. Li gor şertên WTO'yê niha 60 roj dem ji bo lihevhatinekî dûalî heye. Eger herdû alî li hev nekin, Çîn dikarê ji WTO'yê bixwaze ku li dijî DYA'yê dest bi lêkolînan bike û daxwaza biryarekê bike.

Çavdêrên siyasî li Washingtonê gûman dikin ku Obama bi vê biryara xwe dixwazê siyasetmedarên nêzîkî sendîkayên karkeran dilxweş bike û wan ji bo qanûna xwe ya nû ya tenduristiyê qezenc bike. Dijberên vê biryara tînin ziman ku bi vê yekê DYA'yê dikare yek ji giringtirîn hevalbendê xwe di têkoşîna li dijî qeyrana aborî, germbûna avhewayê û belavbûna çekên atomî winda bike.

### Bi Venezûela re peymana leşkerî:

# Rûsya li ber pozê Amerîka bicîh dibe



**Serwîsa Cîhanê** – Di bernameya xwe ya televizyonê ya hefteyî "Aló, presidente" de serokê Venezûela Hugo Chávez gelê Venezûelayê li ser peymaneke nû ya hevkariya leşkerî bi Rûsyayê re agahdar kir. Ji sala 2005'an ve Rûsya û Venezûela peymanên firotina çekan bi qasî nirxê çar milyar Dolar mohr kirine û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) jî vê hevkariye bi goman dişopîne.

Di gera xwe ya 11 rojî de Chávez serdana Rûsyayê jî kir û li Moskowayê bi serokê wî welatî Dîmitri Medwedew re hat cem hev. Ji bo dilxweşkirina Rûsyayê Chávez serxwebûna herdû herêmên Gurcistanê Abxazya û Osêtya Başûr jî nas kir. Bi vê yekê Venezûela piştî Rûsya û Nîkaragûa sêyem welate ku herdû herêmên Gurcistanê wekî welatên serbixwe nas dike. Medwedew li ser serdan Chávez daxuyand ku welatî wî amade ye, hemû çekên ku Chávez bixwaze bifroşin wî. Li gor daxuyaniyên Chávez wî û Rûsyayê li ser hevkariyekî berfereh ya leşkerî li hev kiriye. Di nava vê hevkariyê de kirîna gelek alavên leşkerî wekî keştiyên-bin-avê, helîkopterên şer, panzêr û rokêtê menzîla wan 300 km jî hene. Chávez li ser kirîna roketan got ku ew roketan ne ji bo êrişkirina ser welatekî din dikirin, lê ji bo parastina welatê xwe.

Chávez daxuyand ku Rûsyayê krêdiyek leşkerî ya 2,2 milyar dolar ji bo kirîna panzêr û rokêtan daye Venezûelayê û got ku welatî wî wê 92 panzêrên ji tîpê T-72 û çendîn sistemên roketan bikire. Chávez anî ziman ku bi kirîna çekên nû ew dixwazin sistemên xwe yên heyî nû bikin û xwe ji bo êrişekî muhtemel ji aliyê DYA'yê ve amade bikin. Chávez gelek caran DYA'yê bi niyeta dagirkirina welatê xwe sûcdar dike û dibeje ku daxwaza DYA'yê heye ku çavkaniyên neftê yê li Venezûelayê bikin bin kontrola xwe.

Di vê navberê de DYA'yê jî dilgiraniya xwe ji ber hevkariya leşkerî ya di navbera Venezûela û Rûsyayê anî ziman. Berdevkê Wezareta Derve ya DYA'yê Ian Kelly got ku kirîna alavên leşkerî ji aliyê Venezûelayê dikarê rê li ber rikbariyek kirîna alavên leşkerî li Amerîkaya Latîn veke û ev hevkariya di navbera Rûsya û Venezûelayê dengeya li herdû parzemînên Amerîkayê dike metirsiyê.

Rûsya û Venezûelayê wekî din li ser hevkariya di sektora enerjiyê de jî peyman mohr kirin. Peyman bi taybetî ji bo hevkariya avakirina sentralên enerjiya atomê li Venezûela û kolana bîrên neftê ne. Chávez got ku ti niyeta welatî wî tune ku bombeyên atomî çê bikin û ew dixwazin enerjiya atomê ji bo pêdiviyên sivîl bikar bînin û got ku komisyonek Rûsî-Venezûelayî wê pîlana bernameyekî nûklerî ya sivîl amade bikin. Beriya du heftan Chávez di hevpeyvînekî ligel rojnameya Fransî Le Figaro gotibû ku Îran jî wê hevkariya wan di avakirina bernameya nûklerî de bike.

Di van salên borî de li Amerîkaya Başûr hevrikiyekî kirîna çekan tê dîtin û ji bilî Venezûelayê herî zêde Brazîlya, Şîle û Kolombiya di nava vê hevrikiyê de ne. Di van salên borî de pêwendiyên di navbera Venezûela û Kolombiyayê jî sar bûne û di mehên borî de Chávez gelek caran anîbû ziman ku ew ji ber pîlanê bicihkirina hêzên Amerîkî li heft baregehên lêşkerî yên Kolombiyayê bi gomanin û evyek ji welatê xwe re wekî tehdîd binav kiribû.

## Qedera Îranê hat ser masaya NY

**Serwîsa Cîhanê** – Bi minasebeta Civîna Giştî ya Netewên Yekbûyî li New Yorkê, civînek şeşqolî jî tê lidarxistin. Di civîne de wê li ser riyên rawestandina dewlemendkirina Ûranyûmê ji aliyê Îranê ve bê guftûgo kirin.

Wezîrên derve yên herpênc welatên xwedî veto di Civîna Şêwirmendiya Netewên Yekbûyî (UNSC) de û yê Almanyayê dixwazên roja 23'ê îlonê li New Yorkê bicivin û li ser danûstandinên pêş yên bi Îranê li ser bernameya atomî ya wî welatî bişêwirin. Wekî ku balyozê Brîtanyayê li cem Netewên Yekbûyî (NY) John Sawers hefteya borî daxuyand, serdîplomatê Yekîtiya Ewrûpayê (YE) Javier Solana jî wê tevlî civînê bibe. Sawers got ku civîna çarşemê derfeteka başe ji bo naskirina helwestên hevûdu li ser awayê diyaloga bi Îranê re.

Koma şeşalî ku ji Dewletên Yekbûyî yên Amerikayê (DYA), Brîtanya, Fransa, Çîn, Rûsya û Almanyayê pêk tê, heta niha bêyî encam hewl daye ku Îranê razî bike ku bernameya xwe ya atomî rawestîne. Tê çaverêkirin ku danûstandinên li ser bernameya atomî ya Îranê ku ji sala 2008'an ve hatine rawestandin, di 1'ê cotmehê de dîsa dest pê bikin. Pêncşemê DYA'yê wê bi armaca pêşêlêgirtina belavbûna çekên atomî pêşniyarekê pêşkeşî UNSC bikin û civîn jî wê ji aliyê Serokê DYA'yê Barack Obama bê rêvebirin.

### Almanya ûjdanê xwe nîqaş dike

# Mar bi min venede, bila cîranê min bikuje!



**Köln (Rûdaw)** – Li bajarê Munchenê keseki ku bi hawara çend zarokên 13 û 15 salî ve çû û bi xwe bû hedefa êrîşê û di encamê de hat kuştin ûjdanê Almanya rakir ser tapanê. Sedemê niqaşan ji ew e ku gelek kesên ku li bûyerê temaşe dikirin midaxeleyê cinayetê nekirin. Temaşekirina cinayetê pêşî li guftûgoyen li ser sistema civakî ya Almanyayê vekir.

Bûyera ku bahsa wê tê kirin di 12'ê vê mehê li rawestgeheke trênê ya bajarê Münchenê pêk hat. Dominik Brunner ê 50 salî ku xwest çar zarokan ji ber Markus S. (18 salî) û Sebastian L. (17 salî) – ku dixwestin bi zorê ji zarokan peran bistinin – biparêze, bi xwe bû hedefa êrişkaran û bi lêdanê hat kuştin. Herdû kûjer li cihê bûyerê hatin girtin. Keseki din yê 17 salî bi navê Christoph T. ku ew ji tevlî bûyerê bûbû û ji zarokan pere standibûn û tevlî pevçûna destpêkê ji bûbû, lê di dema kuştina Dominik Brunner de ne li wir bû, bûyer qebûl kir û li dijî wî ji lêpirsîn hat vekirin.

Heroj li devereke Almanyayê kesek tê kuştin anjî rastî awayekî din ê şiddetê tê, lê tiştê ku bûyera Münchenê ji yên din cuda dike ewe ku kesek bi hawara hinekê din ve çû, bixwe bû hedef û tiştê herî bifikar jî; kesen derdor li bûyerê temaşe kirin û alîkarî nekirin. Berê ji bûyerên bi vî awayî li Almanyayê pêk hatibûn û reaksyona civaka Alman ya vê carê ji dişibe ya carên berê. Hinek siyasetmedar û partiyên opozisyonê bang li hikûmetê dikin ku qanûna ceza bijidîne û bi tundî li dijî ciwanên êrîşkar tevbigere. Hinekên din ji fenomêna ku di vê bûyere de dîsa xwe nîşan da wek pirsgirêgekî vê demê ya civakî û ya welatên pêşketî destnîşan dikin. Pirsa ku gelek kes niha ji xwe dikin ewe ku çima ev civak hatiye astekî wiha ku kesêk li pêş çavan tê lêxistin û kuştin, lê ti kes alîkariyê nake.

Di dema ku bûyer qewimî 15 kes li rawestgehê bûn, lê kesî alîkarî nekir. Zarokên ku bûbûn hedefa êrîşê, bi qîrin û girî hewldan bala kesên derdorê bikşînin ser bûyerê, lê dîsa kes nehat alîkariya Dominik Brunner, berovajî hinek kesan berê xwe ji cihê bûyerê gerandin. Yek ji zarokên ku hewlda ku alîkarî ji kesên li rawestgehê bistîne, piştî bûyerê wiha axifî: "Hinek ji wan ji cihê bûyerê dûr ketin, hinekan temaşe dikirin. Ti kesî midaxele nekir. Me xwe ewqasî bêtaqet his dikir."


Christoph T.


Markus S.


Sebastian L.

Li gor qanûnên Almanyayê ji ber alîkarînekirinê ji kesek dikare werê cezakirin. Di xala 323c ya Qanûna Ceza ya Almanyayê de tê gotin ku "eger kesek bikevê metirsiyê û keseki din karibê alîkariyê bike – bê ku xwe bike xeterê – û dîsa jî alîkariyê neke, bi heta saleke girtigeh an jî cezayê pereyan tê cezakirin." Lê ji ber ku di bûyerên bi vî rengî ispatkirina ku keseki dikaribû alîkarî bikrana zor e, li dijî keseki ji wan kesên li rawestgeha Münchenê ji doz nayê vekirin.

Piştî vê bûyerê guftûgoyên li ser sedemên bûyerên bi vî rengî û çawaniya tedbîrên pêşîlêgirtina van bûyeran destpêkirin. Hinek girankirina cezayê ciwanan pêşniyar dikin, hinekên din jî dibejin divê ji bo ciwanên wiha ji cezayê kesên mezin bê bikaranîn û hinek jî guhertin û girankirina sistema cezakirinê bi giştî û kontrolkirina cihên qelebalix bi kamerayên vîdeo pêşniyaz dikin.

Lêkolerê nakokiyan ê Alman Gerhard Schwarz dibeje ku pêşveçûna hûmanîzmê û sivîlbûna civakê wiha kir ku em nizanibin çi helwestê li hemberî şiddeta li dora xwe bigrin. Dema ku monopola bikaranîna şiddetê ne tenê di destê polis û dewletê de bû, wê demê tişteki pir xwezayî bû ku kesên derdor midaxeleyî bûyereke bi vî rengî bikin. Encameke şoreşa Fransayê ew e ku saziyên ku me wek şexs diparêzin peyda bûn û pêwîstiya xweparastina bi çekan nema. Nemana vê pêwîstiyê ji pêşî li tekakesbûnê vekir.

Filozof û sosyologê Alman Alexander Ulfig di vê derbarê de ji Welt Online re axifî û got ku kamerayên vîdeo dikarin di girtina sûcdaran de bibin alîkar, lê ew nikarin wiha bikin ku kesên derdor alîkariyê bikin. Sedema kêmbûna alîkariya hevûdu li gor Ulfig di tekakesbûne de ye. Li xwe xwedîderketin ketiye şûna xwedîderketina li kesên din. Ulfig dibeje ku ligel aliyên tekakesbûnê yên erênî, aliyên neyînî ji hene û ew jî "vegera ber bi xwe" egozentrizm û egoizm in. Ulfig tînê ziman ku encameke din a neyênî ya tekakesbûne ewe, ku alîkarîkirina hevûdu kêm dibe û cesareta alîkariya kesên din gihiştiye asteki gelekî nizm: "tênê eger bêtir mirov dest pê bikin ku tekakesiyê red bikin û alîkariya hevûdu xurtir bikin, wê demê pêşîlêgirtina li fenomenê alîkarînekirina hevûdu mimkun dibe."

# Netewên bêdewlet li CIEMEN'ê digîjin hev

**Ergin Opergin**

**Rûdaw (Paris)** - CIEMEN (El Centre Internacional Escarré per les Minories Ètniques i les Nacions / Navenda Navnetewî ya Escarré ji bo Netewe û Kêmnetewên Etnik) saziyeke nehukmî ye û li binkeya xwe ya li paytextê Katalonyaya otonom, li Barselonayê, ev 34 sal in ji bo duristkirina imkanên parvekirina zanyariyan di navbera neteweyên tepeserkirî û perawêzkirî de kar dike. Di sala 1975'an de li Îtalyayê li sirgûnê hat avakirin. Ji bo berçavkirina rewşa neteweyên bêdewlet heta niha gelek projeyên giring bi rê ve birine.



Serokê vê saziya giranbiha Aureli Argemí di axaftina xwe ya derbarê avakirina saziyê de bibîrtine ku wê demê kesê Katalonyayê û gelê Katalan nas nedikirin. Argemi dibêje ku li Ewrûpayê ji kêmnetewan re nezaniyek sebaret hebû û çapemeniyê behs li wan nedikir. Lewma wî biryar daye ku navendekê ava bike da ku rastiya wan gelan bide zanîn. Argemi wiha dom kir : "Piştî vê jî, meseleya naskirina mafên wan dihat. CIEMEN hate avakirin da ku rewşa gelên bêdewlet vebikole û ji bo naskirina mafên wan ên kolektîf hewl bide û torên hevgirtinê durist bike."

Aureli Argemi destnîsan dike ku CIEMENê heta niha gelek projeyên mezin birêvebiriye. Ji bo vê yekê ji warê zanyariyan de gelek materyalên pedagojik, wek nexşeyên ku cih û zimanê gelên bindest û nenaskirî nîşan didin, amade kirine. Argemi li sr projeyên xwe wiha diaxife: "Di warê naskirina mafên gelan de, CIEMEN'ê bi navê 'Danezana Mafên Kolektîf ên Gelan' danezanek belav kir. Nûnerên gelek gelan ew danezan pesend kirin lê di warê resmî de nehatiye qebûlkirin. Ew danezan niha li ber destê UNESCOyê ye û em li hêviyê ne ku NY vê danezanê wek belgeya bingehîn qebûl bike ji bo birêkxistina biryarên zimanî."

Serokê saziyê Argemi gazinc dike û dibêje ku cemaetê bi çaveke xerab li wan mêzekiriye û wisa zanîbûne ku ev sazî piştgiriya gel û mirovên 'xerîb' û kesên ku carinan navê 'terorîst' lê bû, dikir. "Lê bi ya min iro heta radeyekê em gihiştine wê qonaxê ku parastina mafên gelan wek çalakiyeke pir mirovane tê dîtin. Mesela berê, li vir me Kurd nedinasîn; paşî me ew bi şer û berberiyan nas kirin û niha, em wan wek geleki nas dikin ku doza mafên xwe dike. Yanî, CIEMEN ê çi rasterast çi ne-rasterast hevkarî di guhertina têgihiştina cemawerî ya sebaret bi gelên bindest de kiriye. Lê hêj jî divê em nîşan bidin ku yên xerabkar ne em in, lê ew dewlet in ku hêza dewletê ne ji bo gel lê ji bo tepeserkirina gelan bi kar tînin."

Wek Argemi radigihîne wan Konferansa Neteweyên Bêdewlet ên Ewrûpayê' saz kiriye û niha hewl didin wê bikin konferanseke cihanî. Bi vê konferansê wan xwestiye nîşan bidin ku li Ewrûpayê divê ew ne li dû yekkirinê ne, lê li dû yekitiyê ne.

Argemi di axaftina xwe de gotinê tine ser goraniya saziyên sivîl li Katalonyayê. "Ji bo her tişteki saziyek hatiye avakirin. Em hewldidin karên xwe bi hev re bikin. Mesela di sala 2006'an de Parlamena Katalonyayê destûreke nû ya otonomiyê pesend kir; lê belê Dadgeha Destûrî ya Spanyayê hindek beşên wê qebûl nekirin. Li ser vê yekê, saziyên sivîl du xwepêşandanên cemawerî bi rê ve birin ku zêdetir ji milyon û nîv kes beşdar bûn. Xweş û nexweş siyasetmedar guhdariya nûnerên civaka sivîl dikin, ji ber ku gelek bihêz in."

Argemi cara yekem di sala 1982'an de di seminerek de Kurdan nas dike. "Salon pir tijî bûbû û elaqeyeke baş hebû; lê belê balyozxaneya Iraqê konferans protesto kir û dawiyê mesele li ser rojnameyan hate belavkirin û cemaetê dît ka Kurd di destê dewletên zordest de bi çi awayî hatine tepeserkirin. Piştre me alîkarî û avadankirina nexweşxaneyekê li Hewlêrê. Me dest bi nivîsandina gotaran kir, di rojname û govaran de li ser Kurdên Iraq û Tirkiyeyê. Me di wan gotaran de diyar kir ku li Kurdistanê berxwedanek heye, ku berxwedan belasebeb û di çarçoveyeke normal de pêk nayê. Bi vî awayî, me hewl da doza Kurdan di qada netewî û navnetewî de bidin naskirin. "

Herwiha wan di çend projeyên perwerdeyê de hevkarî kirine. Bi vê armancê, digel Enstîtûya Kurdî ya Amedê projeyek ji bo perwerdekirina mamosteyên zimanê kurdî bi rê ve birine û herwiha ji bo projeya rêzeke pirtûkên fêrkariya zimanê kurdî ew hevkariyê digel Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê dikin. Di hilbijartinên dawiyê de şandeyeke çavdêran rê kirine Kurdistanê û çavdêriyên wan di çapemeniya Katalonyayê de hatine belavkirin.

Argemi dibêje ku Kurdistan ji bo wî welateki mezin ê parçekirî ye. "Ew parçe bi sînorên sexte ji hev hatine cudakirin. Lewma Kurdê ku azadiya gelê xwe dixwaze divê doza yekkirina wan parçeyan bike. Ya baş ew e ku rewşa civakî û siyasî di her parçeyekî de bê başkirin. Herwiha, xala bingehîn ew e ku Kurd hemû astengên li ber hişyariyeke netewî û Kurdistanî ji navê rakin."




### Hilbijartinên Almanya:

# Kurd dîsa dereng man




**Fehmi Balayî (Serokê Enstîtûya Kurd a li Almanyayê):** Divê Almanya Kurdan wek netew nas bike. Li Berlinê ji bo pêşxistina çanda netewan hersal bi milyonan pere tê qutakirin; Me 3 proje amade kirin û pêşkêşî saziyan kir lê heta iro ti bersivek negirt. Ji bilî Kurdan ji herkesî re alîkariya aborî û siyasî tê kirin. Heviya me ew e ku partiyên ku di van hilbijartinan de bibin desthilatdar vê rastiyê û daxwaziyê li ber çavan derbas bikin.

**Salih Yaltî (Berdevkê Federasyona Komelên Êzdiyan):** Di salên borî de me gelek hevdîtin bi partiyên Alman re kirine û beriya hilbijartinan hemû partiyên Alman serdana me dikin û gelek sozan didin me. Lê piştî hilbijartinan deng ji ti partiyê nayê û sozên xwe ji bîr dikin. Tenê partiya Die Linke di vî warî de ji partiyên din hinekî cuda ye û nasnameya Kurdan nas dike. Eger ji me bê xwestin ku em ji bo dengdanê partiyekê pêşniyaz bikin, ewê die Linke be. Lê wekî din her Kurdek û Êzdiyek bila dengê xwe bide kesê ku rastiya wan û nasnameya me nas dike.

**Mele Mihyedîn (Endamê Civaka Îslamî ya Kurdistan):** Em dixwazin û hêvî dikin ku Kurd li Almanyayê, herwiha li hemû Ewrûpayî bibin fermî û mafên xwe bigrin. Divê li Parlamena Almanyayê nûnerên Kurd ji hebin. Divê em ji bo vê yekê bixebitin, piştgiriya hev bikin. Dema di parlamenê de nûnerê me tunebe em dibin wek mirîyan, wek kevirên bê nav û bê tevger.

**Yekitiya Xwendekarên Kurd (YXK):** Kurd li Almanya dijîn û mayinde ne. YXK ji bo ku Kurd mafê xwe biparêzin û bi nasnama xwe werin nasîn, xwendekar û ciwanan teşwîk dike ku di nav partiyên Alman de cih bigrin. Hemû Kurdên ku welatiyê Almanya ne divê dengê xwe bikarbînin, ji bo ku biyanî û bi taybetî Kurd di pêşeroje de bikaribin jiyaneke baş li vir bidomînin. Divê koçber bi xwe jî di siyasetê de çalak bin, da ku bikaribin li hember siyaseta ku di derbarê wan de tê meşandin xwedî helwest bin. Pêwîste Kurd di nava tevahiya partiyên Alman de cih bigrin û ji bo pêşeroja xwe rolekî erênî bilizin.

# Ziryabê sedsala me: Ganî Mîrzo



**Barselona (Rûdaw)** - Ganî Mîrzo, hunermendê Kurd ê ji Qamişloyê. Berî ku li sala 1993'an de berê xwe bide Ewrûpayê, li Helebê konservatûar kuta kiriye. Li gel hostayên mûzîka şerqî yên Sûriyeyê xebitiye û dersên ûd û bestekariyê dane. Piştî ku li Barselonayê bi cih bûye, vê carê li ser flamenkoyê kar kiriye û şeş salan di konservatûarê de xwendiye û dersên gîtara flamenko û ûdê dane. Di vê navberê de komeke mûzîkê ava kiriye û bi pênavê mûzîka kurdî hejmareke konsert çêkirine. Li 2003-4'an de di festîvaleke mezin a Barselonayê de, hikûmeta herêmî, koma wî weki nûnereki rûyê pirçandî yê Katalonyayê destnîşan kir. Koma wan li gelek welatên Ewrûpayê nêzîkî 40 konsert pêşkêş kirin. Albûma wî ya yekem, Ronî, konserteke zindî ye ku li zaningeheke Spanyayê pêşkêş kiribû. Li 2004'an de di navenda herî mezin a mûzîka caz a Barselonayê de beşê Mûzîka Şerqî vekir û navê mûzîsyenê mezin ê Kurd ê sedsala 10'an "Ziryab" lê danî. Ganî dibêje ku Ziryab tesîreke gelek mezin li ser mûzîka Spanya û Ewrûpayê kiriye û bi vî navî xwestiye mîrasa Ziryab dîsa zindî bike. Bi ya Ganî, Ziryabê kurd, qederê 2000 stran li mîrata mûzîka Spanyayê zêde kirine û di gelek warên din ên kulturî de tesîra wî hêj jî li bal ewrûpî û spaniyan tê naskirin. Ganî ji bilî hejmareke xelatên din, li sala 2004ê, ji nav sê sed mûzîsyenên Spanyayê bûye yek ji sê mûzîsyenên ku ji bo xelata "mînîmax"ê hatine hilbijartin. Me xwest em bi vê hilkeftê bir û rayên Ganî ragihînin xwendevanên Rûdawê. Ganî Mîrzo em li restorana wî ya bi navê "Narin", li kêleka şeqama Ramblayê, bûn mêvanê wî.

*Tu li Spanya wek hunermendeki Kurd baş têyî naskirin. Lê belê, diyar e bi tenê ev du salên dawî ne Kurd bi delaliya mûzîka te dihesin. Gelo çima wiha bi derengî?*

Ez bawer dikim ku sedemê vê rengê stîla mûzîka min be. Ez mûzîkeke enstrûmental çêdikim. Ev stîla mûzîkê di nav Kurdan de hîn baş bicih nebûye. Niha em hewldidin ku di nav Kurdan de bingehên vê mûzîkê deynin. Em dixwazin ku guhdarê Kurd guhê xwe bide mûzîkekê ku gotin tê de nebe. Ev di folklora kurdî de heye û gelek dewlemend e jî; êdî dimîne derxistina wê kelepûrê.

*Tu mûzîka xwe çawa binavdikî?*

Mûzîka ku ez çêdikim, enternasyonal e. Stîleke têkel û ne tenê Kurd, hemû kes dikarin guhdar bikin. Niha jî Kurdan zêdetir guhdarên min ên biyanî hene lê ez gelek dixwazim Kurd jî bibînin ka ev mûzîk li ser çi bingehî hatiye avakirin. Di mûzîka min de newayên folklorîk ên kurdî hene, flamenkoya spanî heye û herwiha caz jî heye. Lê helbet min ew caz jî xerbê wernegirtiye; dibe ku ez hewlbidim sîstema mûzîka cazê têbigihim da ku newayên caz ên di nav kultura kurdî de destnîşan bikim. Herwiha, rîtmên flamenkoyê jî ne dûrî me ne.

*Tu dixwazî bi vê mûzîkê çi bikî? Derdê mûzîka te çi ye?*

Mûzîka kurdî mîna golekê ye. Goleke mezin û mend. Av nayê vê golê. Em dixwazin vê golê bihejînin da ku masiyên tê de derkevin.

*Ev gol wê çawa biheje? Gelo, wek ku tu dibî, bi rêya naskirin û întegrekirina mûzîkên cihanî di nav mûzîka kurdî de an çawa?*

Bi ya min divê ji herdu rexan ve bê hejandin. Heta niha mûzîka kurdî xwe li ser qalibekê an jî qalibên sabît gêzirandiye. Ya baş ew e ku potansiyela mûzîka kurdî bi rêkûpêkî bê keşfkirin û bi awayekî delal bê pêşkêşkirin heta ku ne tenê Kurd lê belê gelên din jî bikarin lê guhdarî bikin. Ji bo wê jî, divê taybetiyên mûzîka Ewrûpî, mûzîka caz baş bêne naskirin.

*Mûzîka gelêrî ya kurdî û flamenko û newayên cazê gelek ji hev dûr têne pêş çavên mirovî. Gelo tu li ser çi bingehekê van stîlan digihînî hev, çawa li hev diguncînî?*

Di albûma min a Totico de, sîstemeke mûzîkê heye ku flamenko ye; lê min newayeke kurdî anî bi wan rîtman lêda. Hunermendên flamenkoyê jî min re gotin ev newa li ba me nîne, te çawa çêkir? Belê rast e, li ba wan nîne, ji ber ku kurdî ye û min bi vê ceribandina xwe qalibên flamenkoyê ji fireh kirin, newayeke taze kete nav flamenkoyê. Ev yek, bêxwendin gelek zehmet e. Şert e ku hunermend hem hemû naveroka flamenkoyê baş binase hem jî di warê mûzîka kurdî de xwedanê zanyariyên berfireh be. Mesela, dîsa di Totico de, strana Granada 1000 heye, straneke klasîk a spanî ye, min ew bi ûdê lêdaye û parçe û newayên kurdî jî tê de ne.

*Albuma te ya pêşî, Ronî, Kurd pir reheti lê guhdarî dikin; lê belê, albumên duyem û sêyem, cudatir in, ji neway kurdî dûr dikevin. Gelo, tu werara mûzîka xwe çawa dinirxînî?*

Divê ceribandinên nû hebin, dibe ku sibe pêwîst be em enstrûmanên elektronîk bixine nav. Helbet, ev yek bi awayekî zanistî nebe, wê zererê bigihîne mûzîka kurdî. Berfirehkirina asoyên mûzîka kurdî bi ceribandinên zanistî şert e ji bo bicihbûna hunera kurdî di nav hunerkariya cîhanî û enternasyonal de.

*Tu paşeroja hunera xwe çawa dibînî? Tu wê bêhtir îstîfadeyê ji nimetên mûzîka Ewrûpî bikî an vegerî ber bi îstîfadekirina ji awaz û meqamên kurdî yên kevn?*

Hemû bi hev ve girêdayî ne. Mesela ez hertim guhdariya Meryemxan, Mihemed Arif, Miradko dikim; gava wan guhdar dikim, dikevim nav dinyayeke din. Lê ez dixwazim ji bo gelên cîhanê ew mîrata wan bi rengekî din jî bê pêşkêşkirin. Mesela, ez dixwazim rojekê em li ser Helebçeyê numayîşeke şanoyî çêkin û ez mûzîka xwe bidime xizmeta wê şanoyê da ku em nîşanî cîhanê bidin ka çi bi serê me hatiye. Hêvîdar im rojekê pêk bê.

*Te li ser mûzîka şerqî ders dane, pispor î. Gelo cih û cudatiya mûzîka kurdî, reseniya mûzîka kurdî di çarçoveya giştî ya mûzîka şerqî de li ku derê disekine?*

Ew rîtmên defa ku ji bo dîlanê lêdixe di tu mûzîkeke din a şerqî de nîne. Newaya kurdî xwedanê qalibên xwe ye. Mesela stranên şer, ne li ba Ereban, ne li ba Tirkan û ne jî li ba Farisan nîn in. Klamên şer û evînê yên wek Siyabend û Xecê, Mem û Zîn û gelekên din di heman gavê de nîşana dewlemendiya folklora kurdî ne û folklor bi rastî rengê zêrîn ê deng û newaya kurdî ye. Di stranên kurdî de şahî û kêfxweşî heye, enerjî heye, serqise stranên pozîtîf in û jiyanê xweş dikin.

## Rohat Alakom:
# "Arîstokratên Kurdan jî hebûne!"



**Stockholm (Rûdaw)** - Pirtûka Rohat Alakom, "Torin, Arîstokratên Serhedê" derket. Rohat Alakom li ser pirtûka xwe ji Rûdawê re axivî. Alakom bahs kir ku "Torin" ji navekî zêdetir wek tebeqeyeke civakî dikare bê hesibîn, "Ji nav zêdetir, min ew wek mijar hilbijartin. Li wê herêma ku ez jê têm, berê gelek qala Torinê dihate kirin. Ew wek kom li derdorê Qers, Îdir, Erdehan, Agirî, Erzirim û Wanê diman û komeke mezin pêk dianîn. Hin gund hene tenê ew lê diminin..."

Nivîskarê pirtûkê Alakom da zanîn ku 'Torin' jê re mijareke balkêş bûye û xwestiye ku vê komê ji nêzîk ve nas bike, "Pirtûk bi pêşgotina parêzer Mehmet Ali Arslan hatiye weşandin. Mehmet Ali Arslan bi xwe jî malbata Torinê ye û ji devera Agiriyê tê û vê tebeqeyê baş dinase. Ew, bi salan e di nav tevgera Kurd a siyasî û rewşenbîriyê de kar dike û niha li Îstenbolê dijî. Ew herêma ku piraniya Torinan lê mane di dîrokê de bi navê Welatê Serhedê tên bi nav kirin."

Em jê dipirsin ka gelo peyva torin ji ku hatiye, Alakom dibêje ev peyv bûye navê arîstokratên Serhedê. Gelek caran Torin wek eşîreke Kurd tê hesibîn, lê belê divê zêdetir wek komeke ser eşîran, tebeqeyeke civakî bê zanîn..."

Alakom dû re lê zêde dike ku mezinên Torinê wek rêvebir hatine nasîn û ji aliyê dewletên li deverê de rûmeteke mezin ditine, "Vê yekê bi xwe re tevayî pozîsyona wan a civakî xurttir dikir. Ev deveran ji wan arîstokratên Kurd dihate pirsîn. Rûsan erdên here adan û fireh didane van sînorparêzên kurd. Vê yekê ji her alî ve rewşa wan baştir û statûya wan bilind dikir.

Di sedsalên kevn de wek Şemdîn Axa, Huseyîn Axa, Gulî Cewar Axa (1806-1877) û kurên wî Elî Eşref Paşa (1851-1928), Eyûp Paşa û gelekên din wek mezinên Torinê hatine nasîn. Hemid Beg û kurên Hemdî Begê wek mînak li devera Îdirê gelek hatine nasîn. Hinek ji van kesan di ordiyên rûs de bûne general. Bi Çarê rûs re rabûn-rûniştine. Newiyên wan




iro li van deveran bi paşnava Aras, Guneş û Arslan tên nasîn.

Rohat Alakom li ser armanca nivîsandina pirtûka 'Torin' jî ji Rûdawê re dibêje ku ewî xwestiye bi nivîsîna vê pirtûkê beşeke dîrok, folklor û civaka Kurd ronî bike, "Heta van nêzîkiya gelek kesan nizanîbû Torin çi ye û ev peyva ji kiderê tê. Gelek kesan peyva Torin û peyva Torun ku di tirkî de heye û tê wateya nevî, tevlihev dikirin û qey zanîbûn ji ev herdu gotin ji kokekê tên. Lê belê wisa nîne. Ev peyv jî bo kesan û şexsan jî hatiye bi kar anîn. Wek mînak di gelek stranên kurdî de peyva Torin ji bo kesan ji derbas dibe û di van stranan de jî tê wateya xweşik û delalî û bedew. Li vir jî eynî mantiq, mantiqeke superlatîv heye, wek asilzade, delalî û bijarê malê yan jî malbatê: Te Torinê, te nazikê, te nazdarê...Mirov jî gotinên van stranan derdixe ku keçên Torinê di nav hebûnê de dijiyan, bi xemlên xwe, kincên xwe, bi rabûn-rûniştin û bi xweşikbûna xwe dihatin nasîn..."

Li ser pirsa me ya "Gelo rihê arîstokratiyê di nav Kurdan de çiqasî xurt e?", Alakom wisa dibêje, "Malbatên wek Babanzade, Bedirxaniyan, Cemîlpaşa û yên mayîn di van herdu sedsalên dawîn de di pêkanîn û avakirina netewetiya Kurd de rasterast cih girtine û pêşengiya wê kirine. Van malbatên Kurd wek dewletokên piçûk kar kirine. Rihê arîstokratiyê di nav Kurdan de çiqas xurt e bi rastî zêde pê nizanim û bi giştî min ev mijara nekolye. Lê belê lêkolerê kurd, Zorabê Bûdî Aloiane ku netewebûna macar û kurdî dide ber hev, di nivîseke xwe de diyar dike ku arîstokratên her neteweyî di pêkanîn û avakirina neteweyan de roleke mezin lîstine û ev yeka jî bo Kurdan jî derbas dibe. Ew bûne stûnên netewê xwe..."

Rohat Alakom li ser dîtin û reaksiyonên xwendevanan jî dibêje ku ew kesên ev pirtûk xwendin dîtin ku civata Kurd tenê ji şivan û gavanan, gundî û belengazan pêk nehatiye, "Ji nav vê civatê her komên cihêreng derketine, wek her civatên cihanê. Ev xwekeşfkirinan, baweriyê dide mirovan û netewetiyê xurt dike. Bi saya vê xebatê derkete holê ku arîstokratên Kurdan jî hebûne."

## Karîkatûrîstê Kurd Mamoste Nûjen:
# "Welleh otosansûr heye!"



**Evdila Koçer**

Karîkatûrîstê Kurd Mamoste Nûjen ev demek dirêj e bi karîkatûrên xwe yên polîtîk ve balê dikişîne û ji hêla civaka Kurd ve tê şopandin. Nûjen di quncikê xwe yê di malpera Netkurdê de her dem bi karîkatûrên xwe yên tûj ve rexne li serdestên tirkan û civaka Kurd digire. Ew zêdetir wekî Mamoste tê nasîn, ji Rûdawê re behsa huner û jiyana xwe kir.

*Tu dikarî ji me re behsa 'Karikaturist Mamoste' bikî?*

Ez çawa dest pê bikim? Ez ji Diyarbekir ji qeza Bismilê me. Di 1972'an de min dibistana mamostetiyê xelas kiriye. Li Muş-Malazgirt û Diyarbekir-Bismilê min mamosteti kiriye. Piştî cunta faşîst (1980) derketime derveyî welat û ev 27 sal e li Swêdê dijîm. Heta nuha 2 pirtûkên min î ji karîkatûran çapkirî hene. Di navbera salên 1985 û 1987'an de jî min kovarek du mehî ya bi navê ÎSOT ya karîkatûran (9 hejmar) weşandiye.. Niha li Stockholmê bi karê taksiyê ve mijûl dibim.

*Te çawa dest bi karîkatûrîstiyê kir?*

Ji mêj ve ez jî wêneçêkirinê hezdikim. Di piçûktaniya xwe de min pirtûkên çîzgî-roman pir dixwendin (wek Teksas, Tomiks). Kovara karîkatûran a bi tirkî AKBABA ku di dema xortaniya min de derdiket min hema her hejmarê wê dixwend. Li Tirkiye hunera karîkatûran



pêşde ye. Wexta ez li wir bûm, her min temaşe dikir. Di karikatûrên wan de Kurd her tim wek nebaş, cahil û hwd. dihatin nîşan dan. Min jî xwest zîtê wan di xêzikin xwe de nîşan bidim. Ez dikarim bêjim hostayên min a pêşî ev sebeb, kovar û pirtûk bûn.

*Maneya hunera karîkaturê ji bo te çi ye ?*

Bi kurtayî bêjim ku xweîfadekirina bi xêzikan e. Li welatê me ev deha zêde bi mane ye. Ji ber ku têgihiştina karîkatûr –wêne– ji bo temeşevanan pirî caran ji xwendin û nivîsandina kurdî rehettir e.

*Ez carina mîzaha reş di karîkaturên te de dibînim. Cihê mîzahê divê di karîkaturan de çawa be li gorî te?*

Karîkatûr bi serê xwe bûye senetek. Bi ya min karîkatûr bê mîzah nabe. Îca ev mîzah wek te gotî, mîzaha reş an mîzaha polîtîk an jî nukte, laqirdî û hwd..

*Tu li mîzaha polîtîk çawa mêze dikî?*

Ez mîzaha polîtîk girîng dibînim û dinirxînim. Bi hewakî din bêjim, ev çeka min e. Lê li welatê me xwendin û nivîsandin gel hindik e û pirranî xwendin û nivîsandina xwe bi tirkî dikin . kes tu qîmetek zêde nade berhemên kurdî.. Karikatûr jî di nav de. Ji bo wê jî ez çekên xwe yanî karîkatûrên xwe nikarim baş bixebitînim.

*Hişê rewşenbîr û xwendevanên kurdî ji hunera karîkatûrê re vekiriye gelo?*

Belê ez dibêjim vekiriye. Min demek dirêj dev ji çêkirina karîkatûrê berda bû. Xwendevanên kurdî, nivîskar, hunermend û rewşenbîrên Kurd ên min nasdikirin , hergav ji min daxwaz dikirin ku ez dîsa dest bi çêkirina karîkatûran bikim. Ev derfetên wan jî şanî min dan ku ew ji hunera karîkatûrê re vekirine.

*Heta niha tu ji karîkatureki xwe poşman bûyî ku te xêz kiriye?*

Ez di xortaniya xwe de çep bûm. Ew fikrên çeptiyê xwe di karîkatûrên min de jî nîşan didan. Nuha ez li hinek wan karîkatûrên xwe dinêhirim, di berxwe de dibişirim. Ez poşman nebûme, lê bi aqlê nuha minê guhartinan têde çêkirana..

*Tu ji rexneyên xwendevanan aciz dibî tu caran gelo?*

Belê pirî caran aciz dibim. Li gor rexneyan e ku meriv tiştên dişînin wek rexne hesab bikin. Ji ber ku pirî caran xeberên bêehlaqî, gotinên nexweş, tehdît û hwd. ji min re dişînin. Rexneyên bi tirkî ji min re tên wek prensîp bersîva wan nadim. Ên bi kurdî pirî caran bersîva wan nivîskî didim.

*Li gorî te tabû û klîşeyên civaka Kurd çi ne?*

Ol e, namus e, seks e, hinek û pirsegirêkên siyasî ne.

*Di hunera karîkaturê de xeyala te ya mezin çi ye?*

Ez xeyalên mezin nafikirim. Lê du-sê heb karîkatûrîstên Kurd tîmek avabikirana û govarek hefteyî an rojnameyek mîzahî bi hevre derxistana. Bi profesyonelî ev hunera xwe bimeşandana wê tişteki xweş bûna.

## Helbestvana jinên taristanê: Bilge Sümer

**Gulîstan Baxistanî**
**Frankfurt (Rûdaw)** - Ez rojekê rastî helbestêk Bilge hatim, min xwend û gelekî eciband, ez matmayî mam, bê çima heta niha min tiştekî li ser vê helbestvana delal ne bihistibû? Belê mixabin nenaskirina wê ji kêma- gahiyên min ya li ser wejê û zimanê kurdî bû.

Bilge Sümer li gundê Lebanê, ya Wêranşarê hatiye dînê. Qîza navîn ya malbatekî Ezdî ye. Ew ji sala 2003´an û virve li Almanya dijî û ji bo xwendina xwe li bajarê Hanoverê dimîne. Di kurtejîna wê de gelek rengê jîyana jînen Kurd tên xuyakirin. Xwendina sereke li bajarê Edenê bi tirkî qedandiye. Her çend Bilge di xwendina xwe de serkeftî jî bûye, lê malbata wê dijî berdewamkirina xwendinê derdikeve, bi vî awayî protestoya Bilge li dijî tiştên ku li der û dora wê diqewîme, destpedike.

Bilge dibêje: *"Ji bo ku ez daxwaza xwendina xwe bi dê û bavê xwe bidim fahmkirin, min ew protesto kirin. Ez rojekê temamî li ber ba û baranê, birçî û tî mam, lê belê ez bi serneketim. Ji delva daxwazên min, daxwaza bave min hat bicihkirin. Em bi malbatî di sala 1998´an de vegeriyan gunde dayka min ê ku di şer de hatibû şewitandin. (Gund bê av, bê eletrik û bê mirov bû.) Bave min dixwest gund ji nûhve ava bikê. Bi vî awayî min Kurdistanê naskir. Bi naskirina Kurdistanê pirsên min jî destpêkirin. Li hemberî bave xwe hîn hişktir bûm, min ev yek tehamul nedikir. Evîna kaxez û penûsê di dilê min de bê hevpa bû. Ez derdiketim ber rojê û bi seaten li derve dimam. Hişkbûna li dijî bavê min li hemberî rejîma Tirk hat guhertin. Pirsgirek Kurdayetiyê bû. Ne ez bûm, ne jî bavê min bû. Min dest bi nivisê kir, li hemberî jiyanê û ne heqî ya li jiyana me ya Kurdan. Min êdî bi alîkariya helbestan protestoya xwe didomand."* Û bi kên berdewam dike: *"Çawa be, birçî bûn bê feydê bû (...)."*

"Bi zimanekî hatiye qedexekirin/ Ji te re nameyekê dinivîsinim /Lêvên min disincirin /Pênûsa min agir dibarîne."

Pirtûka Bilge a yekêm ji helbestên van deman pêk hatiyê û bi zimanê tirkî ye. Ji ber ku zimane we yê yekem ê ku pê ferî nivisandin û xwendinê bûye. Di sala 2007´an da Pirtûka we yî dûyem a bi navê "Mêlodiya 8'an" tê çapkirin. Êdî Bilge hatiye Almanya. Bilge salen ji dûrketina dibistane (1997) heta 2006´an wek salên windayî binavdike. Ji ber ku wê di van salan de dîviya tekoşînê li dijî toreya bike.

Bilge diaxife: *"Ev astengî berdewam kirin. Di sala 2003´an de min bi zorê şandin Almanya, bi hinek pêymanê li ser min, bê xwestina min. Min serhîşki kir û li dijî ve jiyana ku wan layîqî min ditibûn du salan tekoşîneke dijwartirin kir û niha ez bi serketim. Wexta ez li demên borî difikirim, ez dibînim ku min 9 salan bûme qurbaniya kevneşopî û nezaniyê."*

"Temenê min 21 sal in / Mêlodiya 8'ê li ser zimanê min e / Bi dilekî şikestî / Distirêm ji Xwedê re / Hebûna wî wek xewnekê / Li çolistanê ye /Mêlodiya 8'ê li ser zimanê min e."

***Tû niha çi karî diki?***

Ev penc sal û nîvê ez li Almanya dijêm û di Akademiya Hûner´e de beşa Film û Şewakarî ye de dixwînim. Ez niha li Akademiyê ji bilî helbestê, wêne û fîlmên anîmasiyonê çêdikim. Bi vî awayî dikarim sê beşên hûnere ji bo bi zimankirina hêsten xwe bi kar binim.

***Helbest di jiyana te de kijan rolê dilîze?***

Helbest ji min re rêyek xwe nasîn û bi naskirinê ye. Eger Bilge yek tenebûna, mumkin e ku min qala we Bilgeyê nekira. Lê min dît û ez dizanim ku bi hezaran, bi milyonan Bilgeyen din hene û serhişki ya min nedihişt ku ez ji bo wan Bilgeyan bê deng biminim. Min xwest ku êdî êşa me, hêsten me bi zimanen me ji alîyen me bên gotin. Milête xelkê li ser êşamin, jiyana min xelatên Nobelê digre, bila êdî hunera Bilge jî bigîje wan mercan. Dîve êdî em armancên mezin di hunera kurdî de bidin ber xwe û hîtabî hunera cihanê bikin, bila cihê hunera kurdî jî bê naskirin. Ji bo min helbest û tevahiya hunerê gellek giring e. Ji ber ku ew bû ye wergera hêsten min.

"Êdî bi sînorên dilê xwe naşewitim / Sînoran yek bi yek diherifînim / Êdî hasten min şerm nakin / Li welatekî bê nav /Êvarên dirêj li benda me ne /Heyv tazî ye / Êvar sar in / Tu dizanî / Tu dizanî lêvên min disincirin."

***Helbestên te li gori keçên Kurd gelek serhildêr in. Tu pir tiştên qedexe an jî tabû tinî ziman. Berî weşandinê ev ji te re nabin asteng?***

Min tu carî nexwest helbestên xwe veşerim. Min her gav dixwest wek jineke Kurd xwe bi helbestên xwe bi mirovan bidim naskirin û fahmkirin. Ez naxwazim sînorên olî an jî cîvate bandor ser helbestên min bikin. Gava ez van sînoran nasbikim û je re derî vekim, ez dûri rastîya xwe, rastîya me û rastiya hunera xwe dikevim. Ez bawer im êdî em wêk milletekî guhartin ji me re şerte. Ez vî tiştî bi bawarî dibejim, ji ber ku ez perçak ji wan im.

***Çi projeyên te ji bo pêşeroje hene?***

Ez niha li ser pirtûka xwe yî seyêm a helbestan dixebitim. Ez bawer im we di wexteki nezik de ji bo weşanê amadê be. Ji bilî we projeyek min pêşengehekê heye lê e wê demek dirêj de xelas bibe û heviya min ew e ku li Kurdîstanê bê vekirin.

***Tu dikarî hinek bahsa wê pirtûke bikî?***

Nave pirtûkê "Pîyalêka din taritî" ye. Ez di ve pirtûk ê de bahsa tariyê, evînên serkeftî û yên têkçûyî dikim. Lê yên min hema hemû têkçûyî ne û jibîrnakim bahsa zebaniyên xwe dikim. Kirtehelbestek ji pirtûka min ya siyem ev e.

"Hinek din Ronahî"

Naxwazim / ji te hêviyê jî parsê nakim / û / natirsim / wek helbestvanê te yî Gotte

Ma / Te / Ji bîrkir / Te min fêrî tariyê kir…"

## Parlamenterên jin ketin rikberiyê





**Hewlêr (Rûdaw)** - Her çend hin rûniştinên nû yên parlemena Kurdistanê encamdane jî, tê texmînkirin ku di rûniştinên dahatû de wê nîqaş gur bibin. Bi taybet jî di navbera Lîsteya Kurdistanî û Goran de.

Balkêşe ku serokê her du lîsteyan ya Kurdistan û Goran jî jin in, herdû jî berê di parlamenê de girêdayî Lîsta Kesk bûn. Lê vê carê serokên herdu lîsteyan dijberîya hev dikin. Seroka lîsteya Goran, Kiwêstan Mihemed, di daxuyaniya bo rojnameya Şerq El-Ewset de balkişand ku gelek astengîyên li pêşiya lîsteya wan hene. Seroka Lista Goran di derbarê rûniştinên ku heta niha yê xûla nû ya parlemenê encamdane de wiha dibêje: "Me di rûniştina yekem de yasayên parlemenê hilweşênîn û dezgeha asayîşê jî bixin ser wezareta navxweyî. Her wiha me komîteya karûbarên jinan ya ji bo kêmkirina rolê jinan hatî danîn, hilweşand."

Seroka Lîsta Goran got ku di rûniştina dûyem ya parlemenê de, Lîsta Kurdistanî dijberiya hemû projeyên yasayî kir: "Ya ku em matmayî hiştin ew bû ku endamên Lîsta Kurdistanî di rûniştinê de bi xurtî piştgiriya pêşniyarên me dikirin û di demê dengdanê de jî li dijî wan pêşniyaran dengê xwe bi karanîn. Ev jî kêmasî û nîşana bê îradeyiyê ye."

Kiwêstan dibêje ku PDK û YNK bi ti awayî biryarê bi mafê jinan nadin: "Min 17 salan di nav YNK'ê de xebatkir, min dît ku mafparastina YNK'ê ya ji bo jinan tenê dirûşm bûn, min dest ji YNK'ê berda."

Kiwêstan di derbarê, Sozan Şehab, ya Seroka Lîsta Kurdistanî de jî wiha dibêje: "Gelek endamên Lîsta Kurdistanî di wê baweriyê de ne ku ew beramberî Lîsta Goran, tehda ji bo Goran li wê postê hatiye danîn."

Seroka Lîsta Kurdistanî Sozan Şehab jî wê yekê red dike û wiha bersîw dide: "Di siyaset û karê parlemenê de ev prensîb nîne ku kesek li postekê bê danîn ku ew wek bersîva danîna keseka din ya ji lîsta beramber be."

Sozan dibêje nerast e ku lîsta wan, ti proje-yasayek ji aliyê Lîsta Goran ve hatîbe pêşkêşkirin û di xizmeta xelkê de be, red kirîbin. "Muxalîf heta niha ti proje pêşkêşî parlemenê nekirîne ku em li dij derketibin. Ya di rûniştinên pêşîn de hatî kirin, tenê çend razîbûnên di peywirê navxweyî û pêkanîna 4 komîteyên nû yên li parlemenê de bûn."

## Jin ji mêrên serjinik hezdikin!

**Stockholm** – Berevajî baweriya gelek mêran, kêfa jinan zêdetir ji mêrên ku di şûştin, maliştin û di bazarê de alîkariya jinan dikin re, tê.

Li gor lêkolînekê ji aliyê "Programa Swêd bo lêkolînên civakî-siyasî" ku 18 hezar hevser li 34 welatan di temenê navbera 25-65 salan de beşdar bûne, gihîşt encama li jor belavkirî.

Di lêpirsînê de di derbarê mêran de jî hin encamên balkêş derketine hole. Mêrên Îtalî, li Ewrûpa wek evîndarên mînak, mêrên Fransî wek yên herî romantîk û mêrên Îngilîz jî wek yê herî centîlmen tên naskirin. Li gor lêkolînekî diyar bû mêrên herî zêde rêz li hevserên xwe digrin Îngîlîz in. Ew li îş û karên nav malê ji hemû mêrên Ewrûpî zêdetir yarmetiya jinên xwe dikin.

Hinek agahî û îstatîkên ecêb ên ji lêkolîna navhatî: Jinek ji Başûrê Afrîqa 215 seatan di karûbarên nav malê de diborîne, hevserê wê tenê 84 seat hevkariya wê dike. Jineka Norwêçî di karê nav malê de sê caran li erkên hevserê xwe ye. Li gel ku jinên Norwêçî di nav jinên Ewrûpî de herî kêm karê malê dikin. Ji bilî vê civaka Îskandînavî nemaze civaka Norwêçî di hemû waran de zêdetir mafê wekheviya navbera jin û mran de cîbicîh dikin.

Ji aliyekî din ve lêkolîna "Programa Swêd bo lêkolînên civakî-siyasî" eşkere dike ku beşdariyeke hêja ya jinên ku di warê aborî de serbixwe ne heye, herwiha rola wan di civakê de girîngtir e û di nav malê de jî bo rêvebirina karûbaran hevkariyeke baştir di navbera jin û mêran de peyde dibe. Ger îmkana aborî ya jinê sînordar be û rola wê di warên din de jî wek warê siyasî tune be kar li malê jî berovajî dibe.

Mêrên tevlî lêkolînê bûne dibêjin jin bi zorê ber bi tembelî û dûrketina ji karûbarên nav malê tên birin, jiber rexneyê li ne başiya karên wanî nav malê dikin. Li gel vêya jî dema mêr alî wan nake, pitepita jinan qet xilas nabe.



## Êdî bûk naçin derveyî welat



**Necmedîn Nêrweyî**
**Zaxo (Rudaw)** - Piştî serhildana 1991'an û heta hilweşîn rêjîma Saddam Husên, piraniya keçan dixwestin bi xortên Kurd ên li Ewrûpa re bizewicin û malbatên wan jî ew dixwestin. Lê van salên dawî êdî kes naxwaze keçên xwe bidin derveyî welêt û keç jî naxwazin li xerîbiyê bijîn evên niha diçin Ewrûpa jî, ewên berî salên 2003'an hatine xwestin in.

Zuleyxa Nayif ku keçeka xwe daye nasekî xwe yê li derveyê welat dibêje: "Poşman im ger sed keçên min yên din hebin ez yekî ji wan nadim derveyî welat., dema keça me çûbû derveyî welat eşkere bû ew bijine ji wê jin e dû zarokên wî hene ,"

Nazdar Wehîd keçek 22 salî ye dibêje ew dem çû ku kurên derveyê welat bên Kurdistanê û bi pereyên ku kes nizane wan çawa bi destxistine keçan bixapînin: "Me fenê wan fahmkirîne û êdî em dizanin karê baş çiye."

Nazdar dibeje kurek hat hevaleka wê razî kir ku pê re bizewice: "Ji ber ku rewşa wan a aborî ne baş bû hevala min got belkî alîkariya malbata xwe bikim, lê piştî ku ew çû derve û bi min re axivî ew pir poşman bûbû. Ji bilî tirsa çûyîna bi qaçaxî ya di rê de kişandî, wê digot rojeke Kurdistanê hêja ye Ewrûpa tevî û şîret li min kirin ku kes min jî nexapîne." Nazdar razî ye li gel kurekî hejar li Kurdistanê bizweice lê derve: "Nanekî bi serfirazî li welatê mirov ji kolanên welatên biyanî baştir e."

Ev du meh in in Erşed Mihemed ji derveyê welat hatiye Kurdistanê û hêrs bûye. Erşed dibêje çima êdî kes bi xortên derveyê welat re nazewicin: "Hatibûm bizewcim û vegerim Ewrupa. Lê min daxwaz ji zêdeyî 4 keçan kir, du wan jê gotin 'em te nagrin' û herdû yên din jî gotin 'erê lê bi mercê tu werî Kurdistanê."

Yasîn karkerekî dergehê sînorê Brahîm Xelîl e. Ew dibeje "Çend sal in li gumrikê kar dikim. Berê gelek gênc ji derveyê welat dihatin ji bo bizewcin. Lê êdî genc bi tenê tên, û bitenê vedigerin."

Civaknas Diyar Evdilla dibeje: "Berê kesek ji derve hatiba çi kur çi keç bi wan razî dibûn. Jiber rewşa xelkê ya aborî xirab bû û dixwestin bi rêya zewaca ligel yekî yan yeka ji derve re jiyana xwe baştir bikin, ewlekariya herêmê jî xirab bû û xelk di derbarê jiyana dervey welat de bê agahî bûn."